# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 55 25 Gulan - 31 Gulan 2015 basnews.com




## Hesen Şerîf: Çavkaniya hunera me reseniya me ye

R16

### Barzani li Forûma Aborî ya Cîhanê

# Peşmerge bû hêviya ereban jî



R02 - 3

Piştî ku li Iraqê Ramadî û li Suriyeyê jî Palmîra ji alî DAİŞ'ê ve hat dagirkirin, di nav rejimên ereb de tirs zêdetir bû. Serkeftinên Peşmergeyên Kurdistanê li dijî DAİŞ'ê bo ereban jî niha bûye yekta hêvî. Barzanî ku li Aman a Urdûnê tevlî civîna Forma Aboriya Cîhanê bû, got 'cîhan serkeftinên Peşmerge bi heyranî temaşe dike.' Barzanî li civînê wek yekta serkeftê dijî DAİŞ'ê tê pêşwazîkirin.

Mîrê Urdunê û serkirdên ereb, hêvî û daxwaza xwe ya derbarê aramî û ewlekariya Iraq û Kurdistanê anîn ziman, 'piştgiriya xwe ya şerê Kurdistanê ya li dijî komên terorîst' teyîd kirin. Barzanî li Amanê ji bilî Mirê Urdunê Mîr Evdila, bi Serokê Misrê Sisi, Serokê Fîlîstînê Abbas Mahmud û şandeyên Sunî re rûnişt. Serokkomarê berê yê Îsraîlê Şimon Peres jî ku tevlî civînê bû bixêrhatina Barzanî kir. R03

## Rûreşiya 5 Nolu'yê ji bîrdankê derdîkeve

Piştî şêwira Şaredariya Amedê, Weqfa 78'iyan, TUHAD-FED, MEYADER, İHD û TMMOB û hin dezgehên din ên Amedê, biryar hate stendin ku Zindana Amedê veguheze Mûzeya Mirovahiyê. Piştî gellek xebatên ji bo vê kiryarê, tê gotin ku ji ber konjuktûrê hikûmet jî erênî nêzîkî veguhestinê dibe.
Berdevkê Weqfa 78'iyan Celalettîn Can da zanîn ku tapoyê zindanê di dest TOKİ'yê de ye û ew ê hewl bidin ku TOKİ nebe asteng. R13

## "Dexesî û nexwendin toka di stûyê wêjeya me de ye"



Niviskar Mîrzengî tîne ziman ku yek ji sedemên pêşneketina wêjeya kurdi nexwendin e. Bi ya wî entelektûel û pênûsgirên kurd li hemberî hev di bin bandora çavnebarî û dexesiyê de ne û qîmetê nadin berhemên hev û naxwînin. Mîrzengî dibêje"Di nava entelîjansiyaya kurdî de rexnegirek nîn e. Kes li ser berhemên kesî nanivîse û nade nasandin. Pirsgirêka mezin ew e ku em berhemên hev naxwînin û hevûdin bi qîmet bi bîr nîn in". R08-9

## Dostaniya kevn hat bîra rûsan!



Piştî serdana Barzanî ya li gel DYA'yê û hin welatên Ewropî; mijara serxwebûnê ku di rojeva cîhanê de cîh digire ket rojeva rûsan jî û ew jî hewl didin da ku bibin alîgirê mijarê. Rûsya a ku di arman-ca revîzekirina siyaseta Rojhilata Navîn de ye, şandeyeke bi seroktiya nûnerê Pûtîn yê taybet şand Kurdistanê.

R02-3

# Dostaniya kevn hat bîra rûsan!

Piştî serdana Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî ya li gel DYA'yê û hin welatên Ewropî; mijara serxwebûnê ku di rojeva cûhanê de cîh digire ket rojeva rûsan jî û ew jî hewl didin da ku bibin alîgirê mijarê.Tê gotin Rûsya li ser mijara ku wê cîhên di warê neft û gazê de pir dewlemend in û çavli rê ye ku di pêşerojê de ew cîh ji Îraqê veqete û bibe ciheki serbixwe ji dewletên rojavayî re bihêle û bi vê mebestê jî daye ber xwe. Rûsya a ku di arman-ca revîzekirina siyaseta Rojhilata Navîn de ye, şandeyeke bi seroktiya nûnerê Pûtîn yê taybet şand Kurdistanê ku Moskova pê re xwedî qêwendiyên kevn e.



### Rûsya di siyaseta Kurdistan û Rojhilata Navîn de diçe revîzyonê

Piştî vegere Barzanî ya ji DYA'yê ji Rûsya'yê şandeyeke berfireh serdana Kurdistanê kir û peyamên piştgiriyê ragihand. Di şandeya bi seroktiya Cîgirê Wezîrê Karên Derve yê Rûsya'yê Mihail Bagdanov de rêvebirên şirketa netewî ya gaz û neftê Gaspromê jî cîh girtin. Li gor aga-hiyên ku ji kulîsan hatine girtin şandeya rûsî diyar kiriye ku Moskova daxwaze ku polîtîkaya xwe ya Rojhalata Navîn û Kurdistanê revîze bike û ew dixwazin di siyaseta xwe ya alîgira statûkoya li Sûriye û Îraqê de hin guherînan bikin û herwiha israra xwe ya kul li Sûriye'yê rejîma Esad bidome jî li ber guhertinê ye. Li aliyê din jî Rûsya hatiye wê qonaxê ku ew ama-dene Îranê qanî bikin da ku li hemberî serxwebûna Kurdistanê ti pirsgirêkan dernexe. Tê gotin ku beramberî vê jî Rûsya dixwaze neftê ji kurdistanê bikire û di warê aboriyê de jî hi danûstandinan bike. Li gor nêrîna pisporan sedema ku Rûsya polîtîkaya xwe diguherîne ew e ku ji dewlemendiya aborî ya Kurdistanê sûd wergirin û herêmê ji DYA û Ewropa'yê re nehilê.

Biryara referandûma serxwebûnê ya ku Parlemena Kurdistanê bi demeke kurt beriya êrîşîn DAIŞ'ê, piştî serkeftinên Pêşmerge yên li eniyan û rizgarkirina cihên ku DAIŞ'ê dorpêç kiribû careke din hat rojevê. Dê gotin ku wê halê dawî yê referandûmê piştî hin guhertinên makezagonê bê dayîn û wê di demeke nêz de bê bikaranîn.

Li aliyê din di serî de DYA û gelek dewletên sereke yên cîhanê jî dest bi piştgiriya çekî li ya li gel Pêşmerge kiribûn û gelek welatan li Hewlêrê bolyozxane vekirin û ew jî bû sedem ku Kur-distan bi awayekî fiîlî bigiîje qonaxa serxwebûnê. Li hêla din tê nirxandin ku Hewlêr di warê dîplomasiyê de êdî navenda Rojhilata Navîn e, serok û rêvebirên gelek dewletan li ser hev tê herêmê û diçe, dîsa Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî li navêndên siyaseta cîhanê bi protokola 'serokê dewletê' tê pêşwazîkirin û herwiha bo pirsgirêkên herêmî jî weke navbeynkar tê qebûlkirin û ew xal jî tê wê wateyê ku Kurdistan bi awayekî fiîlî bûye dewleteke serbixwe.

### Rêveberiya DYA'yê li siyaseteke nû digere

Wek tê zanîn DYA û rêveberiya Partiya Demokrat a DYA'yê ku rêjîma Saddam têk biribû û wek danezrînêrê Îraqê yê dema nû tê hesibandin dibûya ku di warê serxwebûnê de bê teref bimîne, di demên dawî de piştî ku Bexda li hemberî DAİŞ'ê nikarî herêmên sunne û Herêma Kurdistanê jî biparêze neçar ma ku pazîsyona xwe biguhirîne.Tê ragihandin ku bi dawîbûna bêdengbûna DYA'yê ya li hemberî daxwaza serxwebûnê tenê bi gotina Joe Biden a bi awayê "Emê Kurdistana Serbixwe bibînin" xwe nîşan nedaye û herwiha Obama jî êdî ji mijarê dûr nasekine, grûba Demokratan a li kongreyê jî êdî siyaseta Obama ya bo Îraqê dinirxîne û ew meselejî di warê piştgiriya çekî ya rasterast de wek biryareke erênî bi encam bûye. Li aliyê din tê gotin ku Obama ji Barzanî xwestiye ku ew bo serxwebûnê Bexda'yê qanî bikin, li hem-berî DAİŞ'ê şansekî din bidin Îraqê, bo rizgarkirina Musilê jî piştgiriya Bexdayê bikin û her wekî din jî di warê serxwebûnê de rêbazên meşrû û yasayî li ber çavan bêne girtin. Li hêla din, ew du dewr in ku li DYA'yê çavli rê ye ku di dewra pêş de komarparêz bêne ser text û diyar e ku piraniya wan û berbijêrên wanên serokatiyê jî ji dijî domandina siyaseta Îraqê ya heyî ne û herwiha alîgirê veqetîna Kurdistanê ya ji Îraqê ne jî. Her wiha pêşbîniyek jî ew e ku demakratên DYA'yê naxwazin bibin berpirsê parçebûna li Îraq û Suriye'yê û bûyerên ku li herêmê diqewimin, bo vê jî hetanî hilbijartinan rewşê bi qontroleke balkêş didomînin. Herwiha dîsa li gorî çavdêran wateya gotina Biden a, "Emê serxwebûnê bibiînin" jî ew e ku di dema komarparêzan de wê serxwebûna kurdistanê pêk were. Li hêla din DYA ku Rûsya ya alîgirê berdewamiya satûkoya li herêmêye bo xwe weke hevrikekî nabîne û herwiha DYA dikarê bandora xwe li ser YE'ê jî giran bike û li aliyê din jî baweriya wan a kurd nikarin bêyî destûra wan gavan biavêjin jî bi daxuyaniya Barzanî ku ewê bi her halî serxebûnê ragihînin leriziye. Tê gotin heke ku DYA weke ku hemû hevkarên xwe yên li Rojhilata Navîn wenda kir heke kurdan jî wenda bike ewê bi temamî Rojhilata Navîn wenda bike û wê ji rewşa xwe ya 'global power' derkeve û bi temamî di pêvajoyeke girtîkeve.

### Hewla Rûs: Em dostê kevnar in DYA kî ye?

Tê ragihandin ku Moskow, ji ber dizane ku piştî hilbijartinên 2016'an yên DYA'yê ku tê teqezkirin wê Komarparêz qezenc bikin, wê helwesta DYA ya di derbarê yekgirtîmayîna axa Sûriye û Iraqê de biguhere, ji niha ve ketiye nav hewldanan û ji ber vê yekê ji bo sûd ji çavkaniyên enerjiyê yên Kurdistanê werbigre û li herêmê bandoreke nû ya siyasî pêk bîne, biryar daye ku têkiliyên xwe û Hewlêrê gurrtir bike. Hin pisporên siyasî yên ku li Hewlêrê bi şandeya rûs re hevdîtinan pêk anîne didine zanîn ku berpirsên rûs ragihandine ku ew ê Kurdistanê ji DYA'yê re nehêlin, ew ê jî li vê derê bin û ji mêj ve têkilî û dostaniya wan û kurdan heye û ew ê wan têkiliyên berê ji nû ve vejînin.

Ji alî din ve ev hewla rûsan ji alî YE ve bi guman tê şopandin, lewre Rûsyaya ku ji ber avantaja ku bi ser YE ve di warê gaza sirûştî de hukumraniyê dike, ger ku xwe nêzîkî Kurdistanê bike û gaza kurd bistîne wê ev hukumraniya wê hin dijwartir bibe. Ji ber vê dûbendiyê ye ku tê şîrovekirin YE, pê nexweş e ku rûs nêzî kurdan dibin.

Weke tê zanîn Rûsya, heta niha di mijara serxwebûna Kurdistanê de bêdeng mabû. Lê belê dema ku peymanên çekfrotina Iraqê, piştgiriya wê ya ji Sûriye û Îranê re û têkiliyên wê yên dîplomatîk ên bi dewletên din ên herêmê re li ber çavan bêne raxistin, têgihîştin ku Rûsya çima demeke dirêj di mijara serxwebûna Kurdistanê de bêdeng maye. Her wiha pisporên siyasî tev jî dizanin ku Rûsya heta niha mijara serxwebûna Kurdistanê paxav nedikir, dixwest ku statukoya ku ji dema şerê sar maye berdewam bikin û ji ber vê helwesta xwe ji Herêma Kurdistanê dûr dima û bi ser Îran û Sûriyeyê ve li dij kurdan siyaset dimeşand û hewl dida ku li herêmê gengeşî her dom bike. Lê belê piştî ku li Sûriyeyê şerê navxweyî destpê kir û kurd hem li Başûr hem li Rojava wek aktorên siberojê derketin pêş û siyaseta Îranê ya ku bawerî nade tu kesî, Rûsya bêçar ma ku pozisyona xwe biguherîne û deftera dostaniya kurdan a ku ji zû ve ye di sandoqên radayî de veşartibû ji nû ve derxist.



Bêguman divê serdana şandeya rûs a ku hefteya çûyî serdana Hewlêrê kir jî di vê rîwangeyê de bê dîtin. Lewre ev şandeya ku ji Nûnerê Taybet ê Rojhilata Navîn û Bakurê Afrîkayê yê Serokdewletê Rûsya û Cîgirê Wezîrê Karên Derve Mihael Bagdanov, Koordinatorê Şirîkeya Gazpromê ya Dewletê Aleksander Dyukov, Cîgirê Wezîrê Enerjiyê Yuri Sentroin, Serbalyozê Iraqê û yê Hewlêrê yên Rûsyayê û gellek akademîsyenên rûs pêk dihat, bi Serok Mesûd Barzanî û berpirsên hikûmetê re hevdîtinên grîng pêk anîn û peyama 'Em dixwazin di vê pêvajoya hestiyar ku Kurdistan û Rojhilata Navîn ji nû ve ava dibe de, em jî rol werbigirin'

### Ji pûtîn bo barzanî silav

Şandeya rûsî ku daxwaza berfirehtirînkirina pêwendiyên aborî û çandî kir pirtûkeke ku ji aliyê Gazpromê ve li ser dîroka kurdan hatibû amadekirin ya bi navê 'Welatê Efsaneyan' jî pêşkêş kir û xwest ku ew pirtûk li Kurdistanê bê nasandin. Herwiha cîhgirtina rêvebirîn şîrketa Gazp-romê ku yek ji şîrketên sereke yên cîhanê ye ya di şandeyê de jî wek nîşaneya eleqeya Rûs-ya'yê ya li gel gaz û nefta kurdistanê tê qebûlkirin. Di hevdîtinê de şandeya rusî silavên taybet ên Pûtîn jî ji Barzanî re parvekir. Wek tê zanîn dewletên Ewropî di warê gazê de bi piranî ne-çarî Rûsya'yê ne û Rûsya jî wê avantajê di her qadê de bikartîne. Ji ber vê jî Ewropa bo gazê ji çareseriyên cûda digere. Rûsya ku ji vê rastiyê hayîdar e jî naxwaze ku ew çareyên nû bêyî beşdariya xwe bên bikaranîn. Li gor agahiyan Rûsya dixwaze ku di warê derxistin û firotina gaza Kurdistanê de di pêjerojê de hin pêşniyazan bo Kurdistanê bike da ku gaza Kurdistanê li hemberî ya Rûsya'yê nebe çareyeke serbixwe. Tê gotin ku li ser vê jî çavlirê ye ku di rojên pêş de hin projeyên Rûsya'yê bo Kurdistanê bên rojevê. Di warê xetên hinartina gaz û neftê de jî Rûsya naxwaze ku Tirkiye bibe xwedî biryarê û bo vê jî ew dixwazin ku tevî gaz Tirk-menîstanê gaza Kurdistanê jî bi xetên nû arasteyî bazarê bibe. Li hêla din tê gotin ku eleqeya Rûsya'yê ya li gel Kurdistanê bo Kurdistanê rêbaz û çareseriyan zêde dike û piştî serxwebûnê ew rêbaz dê bo ku Kurdistan wek dewleteke sereke di nava lîga navnetewî de cîh bigirê wê bibe derfeteke mezin.

### Rûsya bi ser Hewlêrê re beşdarî lîstikê di be

Digel ku li herêmê bi navêndbûna hewlêrê denge diguhere û meqes tê guhertin YDA-Ewropa û Rûsya ji nû ve tên ser heman meqesê. Lê belê îcar meqes, raya dîplomasî û aboriyê ye. Wisa xûya dike ku waryaneteke nû ya temaya her du aktorên sereke yên şerê sar dê îcar jî li kurdistanê ji nû ve û "di bin erdê" de dubare bibe. Lê tê meraqkirin ku ka gelo dê berberiya berjewendiyên van her du qutban veguhere tevîkirinên nû yan na. Lê belê li gorî pisporan hatina ser heman merîdyenê ya berjewendiyên van her du hêzan li berjewendiya kurdan e.



Serhengê ku ji artêşa sor teqawîdbûyî û di heman demê de Rêvebirê giştî yê malpera www.kurdist.ru'yê Letîf Memed Brûkî ji BasNûçe'yê re axivî û got, "Di demeke ku rojhilata navîn ji nû ve ava dibe de bêdengiya Rûsyayê ji ber bendewariya aktorên sereke ye. Herwiha Brûkî diyar kir ku Rûsya ji vê lîstika nû dûr nasekine û ew amadehiyê dike ku di ser hewlêrê re têkeve herêmê.

Mamed Brûkî amaje bi wê yekê dike ku di welatên rojhilata navîn de nifûsa kurdan awantajeke giring e û li gorî pêşbîniyên Rûsyayê dê di demeke nêz de hêjmara kurdan bigihe 80 an 90 mîlyonî. Brûkî got, "Welatên li dor kurdistanê ji gelek gelan, ji gelek hêmanên etnîkî pêk tê. Lê belê li gorî van welatan hêjmara kurdan ji yên din gelekî zêdetir e. Rûs ji mêj ve li ser vê rasteqiniyê radiwestin.

Pêşbîniya wan ew e ku dê di dahatûyê de hêjmara kurdan bigihe radeyeke bilind. Ji ber vê yekê ew dizanin ku bêyî dîtina vê hêzê ew nikarin li rojhilata navîn bixebitin û herwiha ew dixwazin ku bi kurdistana ku bûyî aktorê sereke re deriyekî nû vekin. Ku ji ber DAIŞ'ê ew herêm belav bûye û aktorbûna kurdan jî derketiye holê. Helbet eleqeya dewletên rojava û ya DYA'yê jî di rojevê de ye û ev yeka dibe ku bibe sedema berberiya berjewendiyan jî. Lê belê dê ev yeka weke berê bi rêbazên şerê sar pêk neyê.

Dawiya dawîn hêzên emperyal biryar dane ku dê ew li hember avabûna kurdistaneke serbixwe ranewestin û dîsa dawiya dawîn ew xizmeta heman tiştê dikin. Herwiha wê di mijara berjewendiyan de lihevkirinek pêk were û Rûsya

jî da ku di lîstika nû de para xwe werbigire dest bi amadehiyan dike. Li Kurdistanê rezerveke dewlemend a xazê heye.Ewropa dixwaze di mijara xazê de bandora Rûsyayê bişkîne û hinek riyên nû bibîne. Lê Rûsya jî dixwaze di vê hewla ewropayê de ji xwe re ciyekî din werbigire û di warê xazê bibe xwediyê gotinine nû.Ne rast e ku em wateyên mezin bidin şandeya ku çûyî Kurdistanê. Lê belê wisa dixûyê ku wê di dahatûyê de şandeyên hîn ferehtir û hîn pilebilindtir biçin herêmê. Êdî ti kes nikare çavên xwe ji serxwebûna rastiya Kurdistanê û ji nûve avabûna dengeyên herêmê re bigre. Eleqeya van dewletên mezin jî wê bi tevgerîna baqilane ya Kurdan ji bo kurdan bibe qezenc."

Herwiha Brûkî di derbarê amadebûyîna di şandeyê de ya nûnerên Gazprom'ê de jî got, "Helbet Gazprom yek ji şîrketên herî mezin ên dunyayê ye. Jixwe li gelek derên herêmê xebatên wan hene. Ew dizanin ku çiqas xaz li kurdistanê heye û helbet ku ew jî dixwazin tevlî vî karî bibin. Ji ber vê yekê amadebûna wan a di şandeyê de tiştekî gelekî normal e. Herwiha ev yeka jî nîşan dide ku dê di vî warî de hin pêşketinên nû jî pêk werin."

### Rûsya naxwaze ku li paş dewletên rojavayî bimîne.

Çavdêrekî din ê siyasî ku di derbarê şandeya rûsan de agahî da rojnameya me parlamenterê parlamentoya Iraqê Bekîr Hemê Sadiq e. Herwiha Sadiq got, "Di serdemeke ku çarenûsa rojhilata navîn ji nû ve tê nivîsîn de Rûsya naxwaze paşve bimîne û ew naxwaze hîn bêhtir derbarê qiymeta kurdistanê de bêdeng bimîne. Ji ber van sedeman seredana vê şandeyê gelekî watedar e. Kurdistan niha bi gavên jixwebawer ber bi navendbûneke giring a dinyayê ve dimeşe. Ji ber vân sedeman têkiliyên digel hewlêrê bala dewletên ku bi herêm û dinyayê re têkildar in, jî dikêşe. Herwiha Rûsyayê jî bi vê tevgerê xwest ku dê ew kurdistanê ji YDA û Rojava re nehêle.

Hemê Sadip diyar kir ku Rûsya, bi taybetî jî ji ber têkiliyên YDA û Rojava yên bi qeyran ên bi bexdayê re û ji ber şerê DAIŞ'ê YDA û Ewropa hîn bêhtir nêzî Hewlêrê dibin û rûsya jî ji bo ku vê valahiyê tuje bike dibêje " Têkoşîna li dijî terorê jî tê de ew amadene ku alîkariya kurdistanê bikin." Sadiq got, " Eger ku rêvebirina herêma kurdistanê polîtîkayên li gorî berjewendiyên Rûsyayê bi rêve bibe û bihêle şîrketên weke Gazpromê li kurdistanê bixebitin wê Rûsya jî weke YDA û Ewropayê bibe xwediyê heman helwestên erênî û ew ê bêhtir xwe nêzî kurdistanê bike."

### Sefera lezgîn a Abadî ji bo Rûsya'yê

Di vê navberê de hem piştî daxûyaniyên seredana YDA'yê û hem jî pêşveçûnên di warê serxwebûnê de rêvebirina bexdayê hewld dide ku "beşdariyeke neyînî" li dar bixe û herwiha ew dijayetiya xwe didomîne. Piştî vegera şandeya rûsan serokwezîrê Iraqê Abadî hema çû Rûsyayê. Abadî ji bo ku mijarên weke ewlehiya Iraqê, têkoşîna li dijî terorê û hin meseleyên aboriyê bi Pûtîn re biaxive çû rûsyayê. Tê payîn ku Abadî metirsiyên xwe yên weke yekitiya Iraqê û dîplomasiya digel hewlêrê jî ji bo wan ragihîne.

Tê ragihandin ku Abadî bi vê seredanê xwestiye ku ji YDA'yê re vebêje "eger ku hûn li dijî serxwebûna kurdistanê ranewestin û hûn piştgiriya me nekin em ê xwe nêzî Rûsya'yê bikin."

Weke hûn jî dizanin di van salên dawiwê de di navbera Iraq û rûsyayê de projeyên firotina çekan hatibûn rojevê û hikûmetên Iraqê li hember emerîkayê qertên Rûsyayê gelekî bi kar anîbûn.

# Pêşmerge êdî dibe hêviya ereban jî

Êrîşên DAÎŞ'ê yên ku li Rojhalata Navîn dewletên weke Îraq û Suriye dane ber xwe û tirsê li ser herêmê direşîne dibe sedem ku erebên li herêmê jî berê xwe bizivirînin Pêşmerge û êdî Pêşmerge bo xwe wek parêzvan û hêviyekê bibînin. Rastiya ku DAÎŞ'ê niha piraniya erdê Suriye'yê zeft kiriye û eyaleta herî stratejîk a nêzikî Bexda'yê RAmadî jî qontrol kir, wek têkçûna Îraqê tê nirxandin. Ji ber ku li Rojhilata Navîn tekane hêza ku li hemberî DAÎŞ'ê bi ser dikeve û dikare xaka xwe biparêze Pêşmerge ye, awareyên ku ji ber DAÎŞ'ê direvin jî xwe dispêrên Kurdistanê û Kurdistan êdî bi awayekî fiîlî weke dewletekê tevdigere.

Tirsa DAÎŞ'ê ya ku li ser rejîmên ereb ên li herêmê her gur dibe bi ketina Ramadî ya Îraqê û Palmira ya Sûriye'yê re gihîşt asta herî bilind û serkeftinên Pêşmergeyên kurd ên li hemberî DAÎŞ'ê jî niha bo ereban jî dibin cîhê hêviyê. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ku li ser daxwaza Qralê Urdunê Qral Abdullah bi mebesta beşdariya Lutkiye Forûma Aboriyê çû Urdunê da zanîn ku cîhan bi heyranî li serkeftinên Pêşmergeyên kurd temaşe dike.

Barzanî ku di hevdîtina bi Obama re vîna serxwebûnê bo meqamên DYA'yê ragihand, piştî vegerê jî hemû partiyên li Parlemena Kurdistanê re civiya û di derheqê serdana xwe de ew agahdir kirin. Di civînê de Barzanî got, "Heke hun li pişt min bisekinin ezê serxwebûnê ragihînim" û pişt re jî bo beşdariya foruma aboriyê berê xwe da Urdunê.

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bi boneya beşdariya Lûtkeya Forûma Abori ya Afrîkaya Başûr û Rojhilata Navîn ya Cîhanê çû Amanê û li wir bi Kral Abdullahê 2. ê Urdunê re li hev rûnişt. Herwiha Rawêjkarê Giştî yê Asayîşa Kurdistanê Mesrûr Barzanî û endamên Dîwana Serokatiyê jî di nava şandeyê de cîh girtin.

Di hevdîtina ku li Qesra Qraliyetê di atmosfereke germ de derbas bû de Qral Abdullah da zanîn ku ewê di warê şerê bi DAÎŞ'ê re piştgiriya Kurdistanê bikin. Di hevdîtinê de herwekî din mijarê weke têkoşîna bi 'terorîzmê' re û têkiliyên di navbera herdû aliyan de hatin rojevê. Qral Abdullah diyarkir ku daxwaza wan ew e ku Herêma Kurdistanê û Îraq bigihîje îstiqrar û ewlehiyê û ragihand ku ewê bo vê jî piştgiriya xwe bidomînin. Barzanî jî di hevdîtinê de daxwaza xwe ya di warê pêşxistina pêwendiyên herdû aliyan de anî ziman.

Li aliyê din Barzanî bi gelek serok û rêvebirên dewletên ku beşdarî lûtkeyê bûn re jî hevdîtin pêk anîn. Barzanî bi Serokomarê Misirê Abdulfettah Sisi û Serokê Dewleta Filîstînê Mahmûd Abbas re jî hevdîtin pêk anî. Di herdû civînan de jî meseleyên weke 'ewlehiya Îraq û Kurdistanê, têkoşîna bi 'terorê' re û serkeftinên Pêşmerge yên ku di şerê DAÎŞ'ê de derdikevin hatin nirxandin.



Barzanî pişt re jî Cîgirê Serokê Parlemena Îraqê Selim Cuburi û cîgirê serok Baha Araci jî qebûl kir. Bo civîna ku di 21-23'ê Gulanê bi mijara, "Lêgerînên nû yên bo aştiya herêmê, piştevanî û pêketina sektorên giştî û taybet" hat lidarxistin ji 50 welatî nêzî hezar siyasetmedar, karmend û rêvebirên dewletan amadebûn.

Barzanî beriya ku ber bi Urdunê bi rêkeve jî bi fermandarên Pêşmerge yên ku li eniyên şer dimînin re jî li hev civiya û li ser rewşa eniyan niqaş hatin kirin. Barzanî di axaftina xwe ya li vir de da zanîn ku hemû cîhan serkeftin û 'qehremantiyên' Pêşmerge bi heyrani dişopîne û temaşe dike. Di daxuyaniya ku li Ofîsa Serokatiyê ya li Selahaddînê pek hat de hate ragihandin ku di civînê de rewşa dawî ya şer hatiye nîqaşkirin û herwiha di derheqê pêdiviyên Hêzên Pêşmerge de jî raportek pêşkêşî Barzanî hatiye kirin.

Li aliyê din pispor jî balê dikşînin ku piştî ku DAÎŞ'ê Ramadî û Palmira qontrol kir pêşketin û serkeftinên Pêşmerge yên li hemberî DAÎŞ'ê bêhtir hatine xuyakirin û ew bêhtir bala cîhanê dikêşin. Tê gotin ku operasyonên Pêşmerge yên ku bi awayekî serkeftî li hemberî DAÎŞ'ê pêk tên dibe sedem ku rejîmîn ku di bin gefa DAÎŞ'ê de ne bêhtir xwe nêzikî Kurdistanê bikin. Ew rastî jî dibe sedem ku Barzanî li lûtkeya aboriyê ya li Urdunê weke tekanê kesê ku li hemberî DAÎŞ'ê serkeftiye tê pêşwazîkirin.

### Artêşa Netewî: Yekbûn di navbera Pêşmergeyên PDK û YNK'ê de

Li aliyê din di warê civandina hemû Pêşmergeyan a di bin bana Wezareta Pêşmerge de jî gaveke mezin hate avêtin. Li gor biryara Parlemena Kurdistanê ya ku di 22 Temûza 2013'an de hatibû girtin70. Hêza Pêşmergeyên PDK û 80. Hêza Pêşmergeyên YNK'ê dema 6 mehî ya ku hatibû diyarkirin bi dawî bû. Herwiha ew hêzên ku her yek ji wan dora 100 hezar Pêşmerge dihewînin ku mezintirîn yekîneyên Pêşmerge ne di bana Wezareta Pêşmerge de hatin civandin. Biryara ku di derbarê mijarê de hatibû girtin ji aliyê parlemenê ve hatibû pejirandin arasteyî serokwezîrê heremê hat kirin û ji liyê serokwezîr ve jî hat pesenkirin. Biryar bo Wezareta Pêşmerge hat şandin.

### Qomîsyona Qanûna Esasî zelal bû

Li aliyê din navên ku wê di qomîsyona amadekar a makeqanûna nû ya Kurdistanê ku çavlirê ye ku mijarên weke hilbijartinên sorakatiyê û referandûmê jî zelal bike hatin diyarkirin. Çavlirê ye ku qomisyon di nava 3 mehan de qanûna esasî ya nû binivîse. Di civîna ku bi hinceta mijarê li Parlemena Kurdistanê hatlidarxistin de navên ku ji alî partiyêns iyasî ve hatibûn pêşniyazkirin hatin pejirandin. Di nava qomîsyona amadekar de ji hemû partiyên siyasî endam cîh digirin.

### Ji YE'yê birayara vekirina nûnertiya li Hewlêrê

Herwiha pêngavên Hewlêrê yên di warê dîplomasiyê de jî bê navber didomin. Gaveke balkêş ya di derbarê dîplomasiya kurdan de jî ji aliyê Yekîtiya Ewropa ve (YE) hat avêtin. Piştî biryara YE'ê ya ku wê êdî ji bo hemû civînên xwe yên fermî nûnertiya Kurdistanê ya Ewropa jî bê vexwendin vê carê jî YE biryar da ku li Hewlêrê nûnertiya xwe veke. Serokê Delgasyona Îraqê ya YE'ê Jana Hybaskova beriya çend rojan bi Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ve civînek pêk anî û da zanîn ku planeke wan a ku li Hewlêrê nûnertiya YE'yê vekin heye. Hat ragihandin ku di warê mijara ku di hevdîtina di navbera Barzanî û Hybaskova de li Ofîsa Serokatiyê ya li Seleheddîn pek hat de di rojên pêş de hin gavên berbiçav bêne avêtin. Hybaskova da zanîn ku bo ku YE û saziyên têkildar karibin bo awareyên ku xwe spartine herêmê kar û piştgiriyê bikin ewê di rojên pêş de hin xebat bêne kirin. Di hevdîtinê de awareyên ku ji ber êrîşên DAÎŞ'ê yên li Eyaleta Enbar a Îraqê reviyane jî hat rojevê. Hat diyarkirin ku divî Îraq û raya giştî ya navnetewî li hemberî ew rewşa awarte ya mirovî bêdeng nemînin û piştgiriya pêwîst bikin. Li aliyê din Barzanî piştî Hybaskova bi Bolyozê Îngiltere yê Îraqê Frank Baker re jî hevdîtinek pêk anî. Di vê hevdîtinê de jî piştgiriya bo Pêşmerge û pêşxistina herdû paytextan hat rojevê.

### Wê bandora Ramadî li ser operasyona Musilê jî bibe

Li aliyê din serekftinên DAÎŞ'ê yên ku li herêma Anbarê li hemberî Artêşa Îraqê diqewimin jî dibin sedem ku Bexda bigihîje asteke ku êdî nikaribe herêmê bi awaekî fiîlî birêve bibe. Herwiha bi ketina Ramadî'yê ve gotina 'yekîtiya xaqa Îraqê' ku bêhtir ji aliyê DYA û Îran û hin dewletên herêmê ve te bilêvkirin jî gihîşt qonaxa dawî. Ji berk u Ramadî bi qasî Musilê herêmeke girîng e bo Îraqê û cîhekî stratejîk e, ketina bi ketina wê re êdî tê gotin ku Îraq têk çûye. Piştî ku Ramadî bi temamî ket destê DAÎŞ'ê tu herêmek di destê sunneyên Îraqê de nema. Herwiha Ramadî wek qeleha herî dawî ya di destê sunneyan de dihat binavkirin. Bi ketina Ramadî ya ku 130 km nêzikî Bexdayê ye re bêyî bêşek ji Bexda'yê qet herêmek bi ewle nema ji Îraqê. Herwiha piştî ku Suriye bi piranî ket destê DAÎŞ'ê û li Îraqê jî rewş ew e, tu bawerî bi gotina 'yekîparçetiya xaka Îraqê' nema. Herwiha nêzikahiya Ramadî'yê ya li gel Bexdayê jî nîşan dide ku wê di demên pêş de Bexda têkeve qefeseke çawa. Li aliyê din bi ketina Ramadî'yê re, plan û amadekariyên bo operasyona Musilê jî neçarî revîzyonê ma û tê ragihandin ku ew operasyon bêyî piştgiriya kurdan êdî pêk nayê.



# Birca Selehedînê Eyûbî hate stendin



Ahmet Özyeter

Piştî ku hevpeymaniya ku ji DYA, Erebistana Sihûd, Tirkiye, Qatar, Ordun û Misirê pêk tê, li Yemenê li dij Hûsiyên Şîa dest bi operasyoneke leşkerî kirin û ji ber piştgiriya Îran, Hîzbûllah û şarezayiya şerê çekdarî ya Hûsiyan operasyonên wan negihîştin aramanca xwe, endamên vê hevpeymanê yên wek Tirkiye û Erebistana Sihûd berê xwe dane Sûriyeyê û dest bi piştgirîdayîna El Nusraya şaxê El Kaîdeyê ya li Sûriyeyê ku wek opozisyona nerm tê nasîn kirin. Bi vê helwesta nû di van hefteyên dawî de El Nusrayê des bi êrîşên mezin kir û hêzên rejimê tengezar kirin.

Piştî vê pêvajoya nû ya ku rikberiya nav aliyên Sûriyeyê tûjtir dike ji bo kurdan pirsên ku di serê mirov de der dibin ev in: Di nav ê rikberiya tûj de wê kurd çi bikin? Ev qeyrana ku hatiye vê radeyê wê dikaribe sûdeke çawa li kurdan bike? Û Mijara Konton, Fedaralî û serxwebûnê wê bi çi şêweyê bi encam bibe?

Di derbarê van babetan de Pisporê Rojhilata Navîn, Nivîskar û Rojnameger Jonathan Spyer, Rojnamegerê Rojnameya Yakın Doğuyê Hasan Sivri, Serokê Navenda Lêkolînên Aşitiyê ya Navneteweyî(IMPR) Doç. Dr. Veysel Ayhan û Endamê Meclîsa Kurd a li Sûriyeyê Suphî Dawud pirsên BasNûçeyê bersivandin.

Hasan Sivri di axaftina xwe de angaşt ku rejima Sûriyeyê YPG'ê weke cîhadperestan nabîne. Jonathan Spyer jî anî ziman ku rewşa Sûriyeyê ya niha ji bo kurdan rewşeke erênî derxistiye holê, ji ber ku herêmên kurdan cihên herî bi ewle ne û ji van herêman xeteriyek der nabe vê yekê pêkan kirî ye ku rejîm kurdan baştir nas bike. Suphî Dawud jî da zanîn ku ew dixwazin li Rojava rêveberiyeke Federatîf ku mafê kurd, ereb, alewî, tirkmen û hemû pêkhateyan radestî wan dike pêk bê û got: "Em ji bo Rojava modêleke Federatîf dixwazin" Serokê IMPR'ê Veysel Ayhan jî nirxandineke cuda kir û got: "Di vê pêvajoyê de ne Esed û ne jî opozisyon nikarin li Sûriyeyê bibin hukumran; Niha di konjuktora navneteweyî de jî qebûleke hevsengiyê heye lê belê di vê pêvajoyê de kurdan, îttifaqên baş pêk anîne"

### Sivri: El Nusra wê êrîşî Efrînê bike

Hasan Sivri ku geşedanên li Sûriyeyê ji nêz ve dişopîne destnîşan kir ku Sihûdî, li Yemenê daxwazên xwe pêk nehaniye, berovajiyê vê yekê Hûsî ji berê xurttir bûne. Sivrî pêknehatina daxwaza Tirkiye û Sihûdiyê ya 'Herêma Tampon' bi bîr xist û got: "Ji ber ku DYA'yê nepejirand, Tirkiye û Sihûdî nekarîbûn ku herêma tampon pêk bînin. Ji ber vê yekê, ji bo di Kombûna Cenevreyê ya ku wê di mehên pêş de pêk bê de daxwazên wan neyêne piştguhkirin piştgiriya xwe ya ji opozisyonê re zêdetir kirin. Sihûdiyan bi mûşekên Tow û Tirkiyeyê jî bi vekirina sînoran vê piştgiriyê dane opozisyonê"

Sivri rexne li wê yekê kir ku El Nusra wek opozisyon tê binavkirin û dom kir: "Bi taybetî li Îdlibê komên tûndrew ên ku ji Tirkîstan, Rojhilatê Ûygûrê û ji Kafkasan hatine hene û heta çalakiyên van koman baş neyêne çavdêrîkirin mirov nikare ji hêzên wek DAÎŞ'ê re bibêje ev opozisyon in" Sivrî mercên dijwar ên Sûriyeyê destnîşan kir û angaşt ku ji geşedanên Şêx Maksûdê diyar dibe ku kurd aliyên rejîmê ne.

### 'Divê yên ne PKK'yî jî beşdarê rêveberiya Rojava bibin'

Pisporê Rojhilata Navîn, Nivîskar û Rojnameger Jonathan Spyer jî di nirxandina xwe ya rewşa Rojavayê Kurdistanê de anî ziman ku rewşa niha ya Sûriyeyê ji bo kurdan sûdwer e. Spyer nirxandina xwe wiha domand: "Hêrêmên herî bi ewle yên Sûriyeyê Rojava ye. Vê yekê jî heta radeyekê naskirina kurdan pêkan kirî ye û encamên vê nasînê jî di piştgiriya êrîşên hewayî yên DYA û hevpeymanên wê de diyar bûn. Bi saya vê encamê DAÎŞ li Kobanê têk çû. Lê belê dîsa jî Kantonên Rojava ji alî dewletên rojava ve wek fermî nehatine naskirin. Sedemê vê yekê jî ew e ku dewletên rojava, hê jî Sûriyeyeke yekgirtî dipejirînin. Hêza kurdan bi tenê têr nake ku vê rîwangeyê biguherînin. Lê belê dema ku mirov şerê ku ew li dij vê hêza mezin a DAÎŞ'ê dimeşîne dide ber çavê xwe, mirov dikare bêje ku kurdên Rojava karekî baş kirine"

"Pirrengînebûn ji bo kurdan pirsgirêk e"

Spyer di berdewamiya axaftina xwe de anî ziman ku heta kurd di nav xwe de aramiyê pêk bînin û herêmên xwe ji rejimê û cîhadperestan biparêzin, wê projeya kantonan rastî pirsgirêkên mezin neye û dom kir: "Lê belê ez dikarim bêjim ku pirrengînebûna wan pirsgireke pir grîng e. Ger ku hinekî din jî aliyên din beşdarê rêveberiyan bikin wê vê pirsgirêkê ji holê rakin Ger ku rengên din ên civaka kurd jî beşdarî li rêveberiyan nekin wê pirsgirêkên wan neyêne çareserkirin û modêla niha nimûneyek e ji bo vê neyênîtiyê, lê bêguman tekane neyênîtî nîne"

Spyer, ji bo bêtir piştgirîgirtina kurdên Rojava ya ji DYA û welatên Ewropayê, pêwîstiya xebatên dîplomatîk û lobiyê destnîşan kir, diyar kir ku di çapemeniya dinyayê de kurdan wêneyekî baş şanî dinyayê daye û got: "Pêwîst e kurdên Rojava, pêwendiyên xwe yên bi Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) re jî baştir bikin. Di navbera RHK'ê û PKK'ê û hevalbendên wê yên Rojavayê Kurdistanê hevkariyeke mezintir û baştir pêwîst e. Di rewşên awarte yên wek şerê Kobanê ev yek pêk tê. Lê belê di rewşên asayî de têkilî baş nameşin û ev yek pirsgirêkeke mezin"

### 'Divê modêla Kantonê bê derbaskirin'

Serokê IMPR'ê Veysel Ayxan jî di nirxandina xwe de balê keşa ser qeyrana li Yemenê û angaşt ku piştî şerê li Yemenê, li Sûriyeyê jî rewş guherî ye, Îdlib ketiye û Lazkiye û hin herêmên alewî ketine bin xeteriyê. Ayhan diyar kir ku piştî ku Siûdî û hevalbendên wê di şerê Yemenê de bi ser neketin, berê xwe dîsa dan Sûriyeyê bi her awayî piştgirî didin Eniya Îslamî û pêwendên wê. Ayhan got: "Şer berdewam dike û di pêvajoyên şeran de çûn û hatên wiha pêk tên. Di vê rewşê de ne Esed û ne jî opozisyon, nikarin bi serê xwe bibin hukumranên tevahiya Sûriyeyê"

Di derbarê kurdan de jî Ayhan da zanîn ku kurdan bi hevpeymaniya navneteweyî re hevkariyeke baş kirî ne û di raya dinyayê de, di derbarê xwe de wêneyekî xweş nîşan dane. Ayhan, diyar kir ku kurdan ji dêvla serxwebûnê de, bi molêla Kantonan yekgirtîbûna Sûriyeyê derxistine pêş, ev yek ji ber realîteya Sûriyeyê pêk hatiye û dom kir: "Realîte û polîtîkaya Sûriyeyê û ya kurdan heye û li gor van polîtîkayan tevdigerin. Di vê xalê de kurd serkeftîne, lê belê divê di modêla kantonê de israr nekin, vê modêlê derbas bikin û bi vî awayî bi gelên din re hevkariyê bikin. Ayhan got: "Merc û dînamîkên şer çi pêwîstiyê bixe pêşiya wan, divê wê yekê bikin. Pêvajo diguherin, dînamîk diguherin û modêl jî diguherin. Ji bo Kantona Cezîr û Kobanê bigihîjin hev hin gav hatin avêtin. Kurd hebûna gelên herêmê jî esas digirin"

### Çiyayê Kizwanê û birca Seleheddînê Eyyûbî di dest kurdan de ye

Ji aliyekî ve geşedanên veşartî yên di derbarê şerê li Sûriye her roj bi xwe re guherînên nû tîne ji aliyê din ve jî li Rojava, li hemû eniyan şer berdewam dike. Şerê ku li Kobanê hin dijwartir bûye xeteriya dûbare dorpêçkirina Kobanê dixe hişê mirovan. Ji aliyê din ve li Cezîr û Hesekê hêzên kurd serkeftinên mezin bi dest xistin û Çiyayê Kizwan ku cihê herî stratejîk ê Rojavayê Kurdistanê ye bi tevahî xistin bin kontrola xwe. Di derbarê mijarê de Hevserokê Meclîsa Dadê ya Kantona Cezîrê Hekîm Xalo, ji BasNûçeyê axivî. Xalo da zanîn ku ji destpêka şoreşa Rojava ve wan bi hêzên tûndrev ên îslamî û herî dawî jî bi DAÎŞ'ê re şerekî mezin kirine û niha jî ji Hesekê heta Serêkaniyê di xeteke 280 kîlometirî de şer berdewam dike. Xalo got: "Gellek deverên ku di destê DAÎŞ'ê de bûn, li gel gellek çek û cebilxane hatin bidestxistin. Çiyayê Kizwanê ku cihekî pir stratejîk e ji DAÎŞ'ê hate stendin û êdî alên me li ser wî çiyayî bilindbûyî ne. Ev serkeftineke dîrokî û pir mezin e. Em vê mizgîniyê didin gelê xwe" Xalo diyar kir ku li vê herêmê çiyayê herî mezin Çiyayê Kizwanê ye, ji ber bilindahiya wê em dikarin çavdêriya qadeke 40-50 kîlometirî bikin. Ev çiyayekî pir stratejîk e û di dîrokê de li ser vî çiyayî gellek şer hatine kirin. Li ser Çiyayê Kizwanê birca Selahedînê Eyyûbî jî heye û niha ew birc di destê hêzên me de ye. Yê ku Çiyayê Kizwanê bi dest dixê, dikare ji Mêrdînê, heta Dêra Zorê, Şengalê, Reqqayê û heta Feradê her derê çavdêrî bike"

Xalo, da zanîn ku demek berê DAIŞ ketiye gundên Asûrî û Suryaniyan yên di navbera Til Temir û Serêkaniyê û gellek kesan bi xwe re birîye û ragihand ku piştî vê bûyerê hêzên kurd berê xwe dane wan gundan û heta îro jî li wan gundan şer berdewam dike. Xalo ragihand ku hêzên Suryaniyan û hin hêzên ereban jî li gel wan şer dikin"

# Riyo bîn yê Îstanbulî



**Nadire Güntaş Aldatmaz**

Senî ke kesê aleqedarî kî zanenê, nameyê romanê Munzur Çemî yo ke bi kirmanckî nuşto "Gula Çemê Pêrre" ya. Hona ke mi bahsê romanî nêkerdo, ez wina kilmek qalê nuştoxî bikerî.

Munzur Çem, mîyanê kurdan de bi nuştoxîya xo namdar o. Serran ra nat kî Grûba Xebate ya Vateyî de seba avêrşîyayîşê kirmanckî gureyeno û bi xo kî ronayoxanê na grûbe ra yew o. Sîyaset û ziwanê kurdan rê zaf xizmete kerda û hona kî no qeyret û ezmê xo ra tebayê vîndî nêkerdo, bi eynî eşq û keyf xebitîyeno.

Munzur Çemî bi naznameyanê sey H. Toprak, A. Taş, M. Çem, B. Şilan, S. Dilan, Mirzali Çimen kî nuşto û hetanî ewro çend romanî, ferhengê kirmanckî-tirkî, kitabêde gramerê kirmanckî û zaf meqaleyê sîyasî û kulturî kî nuştê. Roportajî kerdê, kilamî arê dayê. Terteleyê Dêrsimî û elewîyena kurdan ser o kitabê zaf bikapasîteyî kî nuştê. La ez wazena nê nuşteyî de romanê eyê bi kirmanckî Gula Çemê Pêrre bidî naskerdene.

Hîkayeya romanê Gula Çemê Pêrre mabênê serranê 1990-2000an de, mintiqaya Gêxî de bi surgunkerdişê dewijan dest pêkena û Îstanbul de, taxade feqîre de, "ghetto"yê kurdan de dewam kena. Qehremana romanî Gulcane, yewade genc a. Maye û pî, kalik û dapîre pêro pîya dewêda Gêxî de heyatode klasîk yê dewijan ciwîyenê. Jê dewijanê ê hetî, heyatê xo mal û gayan dima, hêga û bostanan de vêreno ra. Dewijê e hetî jê zafê dewijanê bînanê kurdan çemberê felekî ra vêrdê ra, coka xeylê kî sîyasî yê.

Yî serran ra rew hereketê gerîllayan dest pêkerdo, aksîyonê xo kerdê zîyade. Re-reyê kî yenê dewe, sonê. Mavênê xo bi dewijan zaf baş o. Operasyonî kî dewam kenê. Rozê esker erzeno dewe ser, wazeno ke dewijî çekan bicêrê û bibê qoricî. Dewijan ke qebul nêkerd kî pusturmê danê ci ke tada kenê ke orteyê des rojan de dewe terk bikerê. O mîyan de esker, rew-rew erzeno dewan ser. Gerîllayan mane keno dewijan pê cêno, tersneno. Tayîne kişeno, keno vîndî. Birrî vêşneno. Zulm re dewijan keno.

Qismê romanî yo yewin, ortê teqûreqe de û dormê dîyalogê Gulcane û kalikî de vêreno ra. Bi fekê kalikî, tayê kerdenê gerîllayan rexne benê. Kalik neteweperver o. Zaf dîyo, vêrno ra. Zaneno ke heqa kurdan her çî rê esta la xesp bîya. Wazeno ke zulmê dewlete endî biqedîyo. Labelê nêwazeno ke bi çekan hal bibo. Kuwîno merdena her keşî ver. Nêwazeno ke her di hetî ra kî kes bimiro. Unca tayîne kerdenê bînan yê gerîllayan rexne keno. Ma vajî, mavênê xo de kiştişê hevalanê xo, kiştîşê zobî sîyasetvananê kurdan ûêb.

Dewijî dewlete ra çekan nêcenê û qoricî nêbenê. Dewe teriknenê sonê. Kalikê Gulcane dewa xo ca nêverdano, dewe de maneno. Gulcane bi maya xo, pîyê xo, dêka xo, wa û birayanê xo kî bar kenê sonê Îstanbul, lewê apê xo. Keyê apî pêro pîya di çimî oda yê. Pêrune rê qîm nêkeno. Pere çîn o, kar çîn o.

**Maye û pî, kalik û dapîre pêro pîya dewêda Gêxî de heyatode klasîk yê dewijan ciwîyenê. Jê dewijanê ê hetî, heyatê xo mal û gayan dima, hêga û bostanan de vêreno ra.**

Naye ra têpîya heyat seba Gulcane û keyê xo zaf giran o. Xeylê zehmetî ke ancenê Gulcane birre dana ci ke xo rê karê bivîno, bigurîyo. No mîyan de, waxto ke kar sayê kerd, bi dek û dolabanê Îstanbulî yena têrî. Xaftela xo ortê çamurê Îstanbulî de vînena. Ginena war ro, urzena ra. Heyatê şarîstanê girşî û qilêrê ey de mucadele kena. Biaqil a, sareberz a. Kuwna tenge, zaf zehmetîye ancena la unca kî heyat ra nêvêrena ra. Kar vînena, gureyena. Peynîye de kî bena aşiqê xortê.

Gula Çemê Pêrre, hem hetê wendîşê ziwanê ma ra hem kî hetê rind famkerdena ê demî ra gereke her kes biwano. La ez nê romanî, bitaybetî gencan rê tawsîye kena. Çike nuştox "Gula Çemê Pêrre" de projektor cêno re mavênê serranê 1990 û 2000an ser. Tenga ê waxtî keno eşkera. Qesik çîn o ke roman romanêde sîyasî yo. Xora mileto ke bîyayena xo û ziwanê xo hetê îdeolojîyê resmî ra înkar bîyo, rîyê mensubîyetê xo ra tim zulm dîyo, zaf tabîî yo ke verê coy no durumê xo ano re ziwan. Çîyode hende muhîm ke orte de bî kî zobî luksê merdimi çîn o.

Waxtê serranê 1990an de milet binê zulmê eskerî de nalayêne. Eskerî, rew-rew estenê dewan ser, pê dewijan girewtenê, îşkenca kerdenê. Ge-gane kî kiştenê. Çi waştenê, çitur waştenê henî kerdenê. Şarê ma înşafê înan rê mendîbî. Înan de kî însaf, merhemet û wijdan çîne bî. Bi no tore waştêne ke miletî bihemelnê, bîyarê vatena xo ser. Çare ke nêdî kî yan kiştenê yan kî surgun kerdenê. Na hîkaye de kî ma surgunê keyê Gulcane vîneme.

Karakterê hîkaye zaf rastkên ê. Merdim ke dormê xo de nîyado, desin de înan ra yewî vîneno. Merdim na hîkaye de hem refleksê milî yê kurdan vîneno hem kî mucadeleyê îspatkerdişê bîyayene xo vîneno. Mesela, nameyê pîlan Zerîfa ya, Elîf a, Nermîn a, Gulcan a. Wisiv o. Yê qijan kî Dîlan a, Rojîn a, Dildar o, Şivan o. Yanî avêrşîyayîşê ruhê etnikî, pede-pede bi nameyan xo musneno. Tarîx, her ke avêr şî, zulm re kurdan ke çendla bî, kurdan tenêna kurdêna xo rê wayîr vejînê. Qe toa ke mekerê kî, nameyê domananê xo kurdkî nanê pira. Nuştox, musnayena nê vurîyayîşî bi vurîyayîşê nameyan zaf weş dano famkerdene.

O waxt waxtode ting-tarî yo, zulomot o. Serekwezîre Tansu Çîller a. O waxt de faîlê xo bellî, zaf "faîlî meçhul" estê. Ma ney kî sohbetê Nacnî Xeycane û Gulcane de vîneme. Heyatê Gulcane de di Tansuyî estê. Her di Tansuyî kî keyê Gulcane vêsnenê. Yewe welat de, yewe kî Îstanbul de. Ez vana yewbîyena nameyê her dîyîne tesaduf nîyo. Unca ke bahsê tayê "faîlî meçhul"an kerd, bi nameyanê rastkênan keno. Yî serran de ke kamcî kurdê namdarî ameyê kiştene bahsê yînan keno. Mesela, qalê qetlkerdişê Savaş Buldanî û hevalanê ey keno.

Hetê ra kî bi fekê Zerîfa "flashback" keno. Ma beno waxtê 12ê êlule, hepsê Dîyarbekirî. Gencanê kurdan uza zere de, ma û pî kî tever ra çi zulm ke dîyo, derga-derg qalê ci keno. Bi fekê dadîya Ajda Xanime ra kî ma beno waxtê qirkerdîşê şarê Dara Hênî. Hetê ra kî bahsê Xana Dêrsimije keno. Xana ke waxtê 38î de binê cendegan de menda û henî xeleşîyaya.

**Karakterê hîkaye zaf rastkên ê. Merdim ke dormê xo de nîyado, desin de înan ra yewî vîneno. Merdim na hîkaye de hem refleksê milî yê kurdan vîneno hem kî mucadeleyê îspatkerdişê bîyayene xo vîneno.**

Bi no tore nuştox verênîya nê zulmî, tarîxê nê zulmî ano re ma vîrî. Bi no tore vano ke, no milet tim ameyo qirkerdene, tim surgun bîyo. Nê miletî tim zulm dîyo, feqîrîye anta. Ney ra teber kî nuştox merdimî rew-rew bi fekê qehremanan peyser (flashback) beno dewe. Ciwîyayîşê dewijan o verên musneno û cuya Îstanbulî veracerê ey keno. Taxa Gulcane de kesê ke bi surgun ameyê zaf ê. Derdê yewî ê bînî ra zîyader o. Tayê kirdaskî, tayê kî kirmanckî qisey kenê. Tayê elewî yê, tayê sunî yê. La ferqê keşî keşî ra çîn o. Pêro kî yew hal der ê. Yewmînî rê benê dîyax. Yewnînî rê wayîr vejînê.

Xortêde tirk kuwno Gulcane dima. Gulcane genc a, zaf rindek a, hende kî pak a. Xort ci rê kar kî peyda keno. No kar seba Gulcane hendayê nan û awe muhîm o. Gulcane hetê ra ci rê mînetkar a. Hetê ra kî xof kena, tersena. A wazena ke yewêde kurdî de bizewecîyo. Nêwazena ke karê xo kî vîndî bikero. No mîyan de şîyen û ameyena karî de şahîdê nîjadperestîya tirkan bena, şaş bena. Peynîye de kuwna re destê çeteyade xirabine.

Nuştox, kesê ke welatê xo ra vişîyê, şîyê şarîstananê girsan, uza de zor û zehmetîya ke vînenê, xeribîya ke ancenê, bi şexsîyetê Gulcane û keyê aye ano re ziwan. Gulcane teberê taxa xo de domanan vînena. Tayê solan boyax kenê, tayê kî destmalkaxidan roşenê. Bi no hal kî nuştox trajedîyê domananê kurdan reyna musneno ma.

Trajedîyode bîno ke roman de ca girewto kî şarê surgunî yo ke xo înkar keno, o wo. Tayê elewîyena xo ra tayê kî kurdêna xo ra tersenê û xo înkar kenê. Tayê kî elewîyena xo vanê la kurdêna xo înkar kenê. Çiqa ke nuştox, nê halî rexne keno, unca kî atmosferode henên de ano re ziwan ke merdim şîkîno ke şarê ma yo nîyanên kî fam bikero. Kitab de ca-ca de keso ke kurdkî xo vîr ra kerdo yan kî qe nêzaneno rexne beno. Motîfê folklorikî zaf ê. Tore û înancê şarê mintiqaya Gêxî hurdî-hurdî ameyê nuştene.

Roman heta qismê newin bi mucadeleyê heyatî vêreno ra. Heta no qisim endî ma karakteranê hîkaye rind nas keme. Taxa Gulcane û hevalanê aye nas keme. Qismê newin de kênayî ke kewtî destê çeteyî, tempoyê romanî rind beno berz heta peynîye no tempo qe nêgineno war ro. Merdim nêwazeno ke kitabî xo dest ra ca verdo.

Seke mi cor de kî nuşt, hîkaye û karekterê romanî rastkên ê. Ziwanê romanî zaf sade yo. Qiseykerdişê karakteran rojane yo. Nuştoxî, polîtîkaya ê waxtî bi westayîyade girse arda verê çiman. Atmosfer û bîyenê serranê 1990an û peynîya nê bîyenan de halê surgunbîyayan ke çiturî yo, ma no roman de vîneme.

Belka hîkaye de çîyo ke atmosferê ê waxtî rind musneno wendoxî, şîyayena birayê Gulcane Şivanî ya û reaksîyonê keyê Gulcane yo. Şivan nêşîyo Îstanbul, Wan de şono mekteb. Rozê mektebê Şivanî ra mektubê yena ke Şivan çend waxt o ke mekteb nêşîyo. Pêro tersenê ke nêbo Şivan "faîlî meçhul" bibo. Her roze bermenê, dinya înan rê bena tarîye. Mudetê ra tepîya xebere yena ke Şivan şîyo ko, bîyo gerîlla. Çiqa ke maye zirçena, çîkena, dana xo ro unca kî şa bena ke weş o, nêmerdo. Belka uza tenêna hereyî mireno. Belka kî xeleşîno.

**Belka hîkaye de çîyo ke atmosferê ê waxtî rind musneno wendoxî, şîyayena birayê Gulcane Şivanî ya û reaksîyonê keyê Gulcane yo. Şivan nêşîyo Îstanbul, Wan de şono mekteb.**

A roje ra dima kî ters qet zereyê înan ra nêvejîno. Çimê xo televîzyon ra menenê ke ala senê xebere dano. Keso ke welatê ma de ciwîyoya kî raya xo uza ra vêrda ra, yan kî uza dost û hevalêde xo esto, yan kî nan û awa ma werda, pêro kî zanenê ke çimê dayîkan, zaf ê ekranî ra mendî. Zaf linganê cendeganê ke têlewe de rêz kerdê, nîyadayî. Zaf bermayî, çîkayî. Vengê dayîkan hard û asmên lone kerd. Ne merdene qedîya ne kî bermişê dayîkan.

Unca, dîyalogêde muhîm qismê diwêsin de mavênê Gulcane û Sîyamendî de vêreno ra. Hurdemêna mesela kurdan ser o munaqeşe kenê. Neheqîya dewlete û sebebê destpêkerdîşê herbî ser o ke qisey kerd, na raye kî persan kenê ke no herb çayê nêqedîno? Kam, çayê nêwazeno ke no herb biqedîyo? Nê herbî de kara kamî esta? Cewabê persan kî bi xo danê.

Xeznaya çekuyan yê nuştoxî zaf dewletî ya. Merdim tayê çekuyan û îdyomanê orjînalan ke merhela vîndîbîyayîşî der ê, tey vîneno. Tayê çekuyî mi ke kitab de dî, newe ra amey re mi vîrî. Mesela, "nalmekîye", "kosebî", "puxtek", "êrxat", "hurenayîş", "qal-qir kerdene" ûêb.

"Xebere sey tofanê nişte ro dewe."(r.55), "Bejna xo ya sey leya silule, tadêne.(r.163)", "Merdimî vatêne qa zerenc a, qeqibnena.(r.164)", "Bejna xo ya derga barîye mendîbî ro leya qawaxe. (r.166)" Teşbîhê sey nînan kî hîkaya xemelna û kerda weş.

Na hîkaye, peynîye de hîkayade surgunî ya, nuştoxê romanî kî bi xo, na hîkaye ra dûrî nîyo. Heyatê nuştoxî kî surgun de vêrdo ra. Yanî hetê ra kî heyatê ma pêrune nuşto. Eke biwanê, her kes kî nê romanî de tenê kî xo vîneno.

Kitab, hetê famkerdena ziwanî ra qe zor nîyo. Seke "Vateyê Edîtorî" yê kitabî de kî vajîyeno tayê îstîsnayan ra qeyîr nuştoxî, standardê Grûba Xebate ya Vateyî esas girewto. No semed ra kî famkerdîşê kitabî seba her keşî zaf rehet o.






# Xerîbîya min a bênamîye

**Rindê Becerikli**

Merdim beno ke bibo wayîrê zanayîşî la wayîrê şexsîyetî yanî wayîrê karekter bîyayîş çîyêko cîya yo. Yanî serdemê modernî de merdim rehetêr eşkeno bireso agahî, la ma zanê ke agahî yan zî zanayîş wexto ke ciwîyayîşê merdimî de vurîyayîş bivirazo beno wayîrê mana. Û no serdem de zanayîş û agahî sey eynî çî yenê fahmkerdiş.

Xeylêk zeman o ke ez merdimanê dormaleyê xu temaşe kena. Û ganî ez vajî ke no wext de ez xeylê ca gêraya û mi zaf merdimî dî û şinasnayî. Zafê nê merdiman de yew xususîyeto hempar estbî. La ez nêşkayêne nê xususîyetî analîz bikerî û tesbît bikerî. Seba naye mi kerdê nêkerdê ez nêeşkayêne dayîş û girewtişê xu de aram bibî. No zî xususîyetê min o xirab o. Wexto ke ez kes yan çîyêkê xerîbî der bikewî munasebet yan zî bidî û bigêrî gereka ez bieşkî înan bişinasnî, goreyê zanayîşê xo analîz bikerî. Yanî yew nameyê înan mi het bivirazîyo. Yanxo bêaramîyêk, nerehetîyek mi der virazîyena. Û xeylî zaman o ke ez aram nîya. Merdim û cayî mi rî xerîb ê. Ez înan vînena, înan dir qisey kena. Ma pîya huyena, ez tenika bermena la hewna zî a bêaramîya ke xerîbî ra yena fek-sukrê mi veranêdana. Tay zeman merdim zaf gêreno çîyêk. Ez vana "çîyêk" çimkî merdim wexto gêreno tay wext esto ke hema nameyê ey çin o. Zaf gêrena la cayo ke qet nêpawena de vînena. Ewro mi sebebê bêaramîya xo dî. Nê demanê peyênan de merdimê ke dekewtê heyatê mi manenê yewbînan. No yewbînan mendişê înan mi rê xerîb bi.

Ma bibî hevalî, bibî dostî. La mi kîşta înan de yew xerîbîyêka zerrîya mi dejnena kerdêne pîle. Wexto ke merdim mîyanê dost û hevalanê xo de xerîb bimano dejêko giran xo dano zerrîya merdimî ro.

Şinasnayîş muhîm o. Belkî çîyo ke merdim şinasneno, o ke merdim paweyê ci yo nêbo, belkî o dejêko giranêr bido merdimî. La nêzanayîş, nêşinasnayîş, xerîb mendiş giranêr nîyo.

Ez hema teber ra ewnîyena merdimanê ke hê mîyanê cuyêka "normale" de ra. Û merdimê ke hê dormaleyê mi de mi înan de yew xususîyeto hempar ferq kerd. Hetê zanayîşî ra yanî xo resnayîşê agahî de raşt a zî aver şîyê. La nê averşîyayîşî eynî tesîr karekterê înan ser o nêviraşto û no zî bîyo sebeb ke şexsîyetê înan de yew parçebîyayîş bivirazîyo. No parçebîyayîş him înan de him zî kes û dostê kê hê dormaleyê înan de bêaramî ano meydan.

Cewabê persa çira wina yo, munaqaşeyêko sosyo-psîkolojîk wazeno û sewîyeya zanayîşê mi qet naye rê qîm nêkana. La no ferqkerdiş belkî derdê mi rê nêbo derman, labelê seba min keşfêko muhîm bi. Tayê cewabî nêbenê çare la bê înan zî nêbeno. Lazimatîya înan merdimî de bêarmamîyêka xorîne virazena. Nika yew nameyê bêaramîya mi esto. No bes nîyo la çîyêk o.

Xora xeylê wext o ke ez qîmê xo bi "çîyêk" ana.*



BasNûçe 25 Gulan - 31 Gulan 2015


## Xurşîd Mîrzengî:

# Dexesî û nexwendin toka di stûyê wêjeya me de ye

**Bêzar Bêwar**

Nivîskarê pirtûkên weke 'Belqitî', 'Sînor' û 'Ristemê Zal'Xurşîd Mîrzengî ku demeke dirêj e li Ewropa jiyana xwe didomîne jî weke gelek kurdên sirgûn êdî dikarê bê bend bê welatê xwe û biçe. Herwiha Mîrzengî ku di warê ziman û dîrokê de dixebite, lêkolînan dike û çend kitêbên wî ji bo çapê amade ne li ser wêje û wêjenûsiya kurdî diyar dike ku kurd bi nexweşiyeke weke çavnebarî û dexesî re dijîn û ji berhemên hev bêhay in.

Mîrzengî tîne ziman ku yek ji sedemên pêşneketin an jî negihîştina romana kurdî ya li gel asta ku romanûsiya cîhanê lê ye nexwendin e. Bi ya wî entelektûel û pênûsgirên kurd li hemberî hev di bin bandora çavnebarî û dexesiyê de ne û qîmetê nadin berhemên hev û naxwînin. Mîrzengî, "Di nava entelîjansiyaya kurdî de rexnegirek nîn e. Kes li ser berhemên kesî nanivîse û nade nasandin. Pirsgirêka mezin ew e ku em berhemên hev naxwînin û hevûdin bi qîmet bi bîr nîn in" got. Mîrzengî pirsên me yên di derbarê jiyana xwe, wêjenûsî û rewşa entelîjansiyaya kurd de bersivand.

**Pêşî em dixwazin bo xwînerên me hun hinekî xwi bidin nasandin**

Navê minî fermî ê nifûsê Evdirrehman Esmer e. Lê piştî ku derketim ji welêt, min dest bi nivîsê kir min navê Xûrşîd Mirzengî bo xwe danî. Ez di 15'ê Temûza 1950'î de li gundê Zengiyê ku bi Licê'yê ve girêdayi hatime dinyayê. Ez çar sal û nîvî bûm bavê min wefat kir. Jixwe bavê min jî hîna du salî bû bavê wî di şerê Şêx Seîd de hat kuştin û bavê wî 29 salî bû wefat kir bi rehma xwedê. Wexta ku bavê min mir, xaniyekî me li Diyarbekirê hebû. Ew jî ji kalikê me mabû. Aslê me em Badikî ne, ji gundê Karan kalikê me Evdî Beg hatiye Zengê, erdê filehan bû. Li wir gund ava kirin, dû re jî navê wî danine Zengî, bûye mixtarlix û ez li wir hatime dinyayê. Piştî bavê min mir, ez bûm xwediyê wî mal û milkê ku hebûn, ez xwediyê wî mam. Diya min mêr nekir, li ser me ma. Wisa jiyana min a zarokîtî nêvî li Diyarbekir nêvî li gund derbas dibû. Mesela her meh em dihatin me kiriya xwe ya xaniyên xwe disitendin û em diçûn. Zarokatiya min hinek li gund hinek li Diyarbekir û hinek bi feqîtiyê derbas bû. Bavê min hinde sax bû ji min re elfabeya erebî nivîsî bi destê xwe, çimkî bavê min Qûr'anxwede bû bavê wî jî mele bû û min hîna elfebê neqedand bavê wî wefat kir. Lê piştî ku bavê wî wefat kir jî pîrika bavê min sax bû hê, ewê xwendina min dewam kir yanî min dersa xwe ji wê sitend. Dû re li cem meleyên din min xwend û dû re jî çûm li çend cihan min feqîtî kir. Li Derwêş Hesenan, li Bîra Xoran, li Mişilfê, li çend gundan. Li Hezroyê piçekî min û heta 14 saliya xwe

**Pişt re, piştî zarokatiyê xwendina te ya feqîtiyê bi dawî bû, piştî wê di warê dibistan an jî zanîngehê de, te çi kir?**

Min li gund bo mekteba Tirkiye jî qeyda xwe çêkir. Di 1961'an de li gundê me mekteb çêbû. Li wir, mi'elim serê sibehê ew sond bi me didan xwarin. Türküm, doğruyum çalışkanım... Lê me nedizanibû em çi dibêjin."Varlığım Türk varlığına armağan olsun" filan... Min jî ji zarokan re digot: "Nexwînin" Îcar zarokan nizanîn, mielim ji wan re wiha dibêje, piçekî zora min li ser zarokan bû. Ez qet di nav zarokan de mezin nebûm di nav mêran de mezin bûm. Di civatê de gava ez diçûm di şûna bavê min de tevdigeriyan. Di du saliya min de ez ji mektebê avêtim, ez û 3 hebên din, ew jî pismamên min bûn. Ji ber ku me ew sond nexar. Min qeyda xwe bir Herhelê. û ez neçûm mektebê. Lê dawiya ku 5 sal tijî bû me mala xwe anî Diyarbekir. Ez çûm min dîploma stand û dû re min dîplomaya dibistana navîn û lîsayê jî min ji derve stand. Feqîtiya min jî dewam dikir. Beriya ku ez werim Diyarbekir, têkiliyê min û bajarvaniyê, bi sînema û şanoyê û xwendinê re ez dikarim bêjim 11-12 saliya min de bi Tirkî bû. Mesela wê çaxê fotoroman hebûn. Zarokan jê hez dikirin..Mesela Tomîks hebû Apaçî hebû... Min ji wan pir hez dikirin. Min ew digirtin û dixwendin. Min xwe da xwendinê. Berê jî min ji xwendinê hez dikir. Dû re di DİSK'ê de bû sekreter. Ew li Diyarbekir memûr bû, li mala me kirecî bû. Wî roman nîşanî min da, yanî roman hînî min kir, roman çi ye çawa ye filan... Min dest bi romanê kir. Ez dikarim bibêjim bi sedan belkî nêzî hezarî, ez diçûm cihê kutubxaneya Diyarbekir li ser Ulu Camiyê bû, qada jor bû, min ji wir deyn dikir, min dianiya malê û min dixwend. Îcar min ji edebiyatê jî hez kir, min Melayê Cizîrî nas dikir, Ehmedê Xanî, Cegerxwîn, ew şiîrên wî li cem feqîyan şiîr hebûn, dîrekt kitêb tunebûn, text hebûn. Bi hinek feqîyan re mesela ê Melayê Cizîrî bi qasî vî kitêbî em bêjin ew şiîrên wî hebûn. Hemû destnivîs bûn, yanî ew ên metbeayan tune bûn. Ew feqiyan ji ber hev dinivîsandin, bi vî awayî min edebiyat nas kir.

**Tu kîngê çûyî Ewropa'yê?**

Pêşiyê min mala xwe anî Stenbol. 16 saliyê de ez hatim Stenbolê. Lê li vir Stenbolê ez hatim îcar, min tîyatroya Stenbolê nas kir, min sînema nas kir, em bêjin hevalên bi dil naskirin, şoreşger min nas kirin, ew ên ku diçûn unîversîteyê. Ez bi wî awayî bi kekotiyê û bi serê xwe,her tim patronê xwe bûm û her tim di nava xwîna




min de hebû ku ez navê bav û bapîrê xwe heder nekim. Di piçûkatiya min de pîrika min digot em beglerê Badikan in, kalikê me Evdî Beg hatiye li vir gûnd çêkiriye, wisa mezin nîşan dida.Bi wî awayî min xwend, ez çûm eskeriyê, 20 meh min eskerî kir, ji eskeriyê vegeriyam. Wexta çûm eskeriyê min dikana xwe firot. Îcar min go ez ê qerarê bidim ezê tîcaretê bikim ji bo zengîniyê yan ezê karekî bikim ji bo welat? 6 mehan ez nexebitîm. Di nava Stenbolê û Diyarbekirê de ez çûm û hatim. Îcar bi wî awayî min polîtîqayê jî naskir.

**Yanî tu ji ber meseleyên siyasî çûyî Ewropayê an?**

Îcar ez ê aniha werim ser çûyîna Ewropayê. Ew roj min qerar da ku ez ê herim Diyarbekir, îcar ez ê ji bo kurdayetiyê ewê bikim. Ew çax sendîqacî bûm. Ez çawa çûm Diyarbekir ez ketim KDP'yê. Di nav 3-4 mehan de ez ketim KDP'yê û dû re ez kirim berpirsiyarê Diyarbekir û cûnta hat, ez çend caran hatim girtin. Polêsan tespît dikir ku pere li ba min heye, îcar hema mehekî carek dihatin bela xwe di min didan. Rojekê dozgerek hat pastaxaneya min . Got, "Li kar mar nefikire. Ew çend carin tu têyî girtên li bi awayekî tu derdikevî. Vê carê ewê rasterast te bikujin. Vê carê te nagirin bila haya te hebe." Wê çaxê bi rastî ez tirsiyam. Cara ewil dikarim bêjim wî çaxî ji tirkan tirsiyam. Wê çaxê min lêxist ez çûm ewê, min pastaxaneya xwe firot, ez çûm Sûrî. Li Şamê mam ez. Li Qamişloyê mam. Dû re jî ez çûm Swêd. Lê wexta ez li Diyarbekir bûm wexta pastaxane di destê min de bû, min dest bi romanekê kiribû."Ben Neyîm Ogretmenim." Xortekî, kurekî ji mealima xwe pirs dike dibêje "Ogretmenim ben neyim." Ew ê jî dibêje "Sen Türksün" Dû re diçe ji pîrika xwe pirs dike dibêje "Pîrê ez çi me?" Dibêje "Tu mêr î kurê min." Yanî, ew dibêje tu Tirk î ew dibêje tu mêrî... Ew bersiva wê nîne. Dû re careke din diçe ji mealimê pirs dike, dibêje "Mizgîn sana söylemiştim" Dû re ew û mealim dibin dostên hev. Wisa romanekê, lê bi tirkî. Lê wexta ez li Diyarbekirê bûn, neqediyabû, li Sûrî min ew qedand. 606 rûpel di destê min de ye û weke xwe li malê disekine. Ez demeka dirêj fikirîm min got a herî baştir bi ziman re mijûl bibe. Bi ziman re tu dikarî edebiyatê bi awayekî baş binivîsî. Îcar min biryar da ku ez ê romanê binivsînim. Romana kurdî îcar, tirkî ez dev jê berdim. Lê îcar gramera min têrê nake. Wê çaxê li Swêdê min cara ewil "HAWAR" peyda kir, Hawara Celadet wana. Hamre Şeşo li Elmanyayê kitêb çap kiribû. Ez sê salan li ser gramera kurdî xebitîm. Piştî ku ez gramerê fêr bûm min dest bi romanekê kir "Sala Şewatê" Ew a ku pîrika min digot û ez ê wan binivsînim.

**Gava meriv li wêjeya kurdî dinêre, di nava edebiyatê de beşa herî giran herî zehmet, a zarokan e. Çima?**

Ji ber ku ya zarokan, tu gotinê biçûk dikî, bi gotinên herî hindik tu mecbûrî bibêjî. Wexta ku te ew bûyer biçûk kir tu neçarî bi gotinên hindik bibêjî, gotinên xweşik derdikevin meydanê. Di wir de huner heye. Roman bixwe di nava 7 sanatên baş û xweşk de ye, lê li gorî min nivîsandina çîrokê ji romanê hê zexmtir e, tu mecbûrî zêde li serê bifikirî, kurt bikî, bi gotinên felsefîk, kin û xweşik bibêjî. Ji ber wê di çîrokekê de felsefe ji a romanê girantir e. Di hemû miletan de wisa ye, di me de jî wisa ye. Kurdan jî wiha kiriye. Çirokê kin dikin û dibêjin.

**Meseleya modernbûn an jî modernîzebûn, modernîzasyon, tesîrekê çawa li ser jiyana kurdan û li ser edebiyata kurdan kiriye?**

Niha gelek ji min re dibêjin "Xûrşîd klasîk dinivîse. Klasîka bingeha civata me ya ku ji feodalîzmê hêdî hêdî derbasî kapîtalîzmê bûye. Aniha kapîtalîzm jî tu dibînî li cem me jî gelek pêş de çûye. Miletên ku nikaribin mîtolojiya xwe binivîsin, ewil bi min mîtolojî ye, nikarin çîrokên xwe jî xweşik binivîsin. Çîrokên xwe nenivîsin nikarin romanên xwe jî xweşik binivîsin. Eger nikaribin romanên xwe yên klasîk binivîsin nikarin romanên xwe yên modern jî binivîsin. Çima, bingeha klasîzma romana kurdî nehatiye dayîn ku tu wê modernîze bikî Mesela Ewropaîyan febrîqe çêkirine. Deqtîlo çêkirine, ji deqtîlo derbasî çi bû, piştî bû kompîtur. Wexta tu bingeha klasîzmê daneyinî ewên din xav tên. Mesela romanê kurdî ku derdikevin, ez dixwînim di çîrokeke kurdî de ji dema Celadet wan de tu bigirî werî tu ji min bipirsî, ê ku rihê çîroka kurdî bi rastî daniye, kî ye, yek Edîp Qarahan e, yek jî Qedrîcan e, wan her duyan rihê çîroka kurdî derxistine, danîne, afirandine. Bi zanebûnî. Îcar aniha hinek derketine, 4 kitêban naxwîne dibêje ez nivîskar im. Tu dibînî, xav e, rijî ye. Wexta tiştekî rijî bibe, tam nade devê te. Gere rûn tê de bibe, bê rûn in. Romana kurdî jî. Lê li aliyekî jî wek nivîskarên ku tên naskirin. Nivîskarên rihê edebiyata zimanê xwe li ortê datînin, ji wan hê pêşdetir, hê zûtir tên naskirin. Lê ên wan heta cihekî ye, Mihemed Ûzûn jî magazînel e. Baş kiriye ku bi kurdî nivîsiye lê magazînel e. Klasîzma zimanê kurdî nikare deyne. Çend rêz be jî nikare li wir bi cih bike. Îro ez bawer im pêş de diçe hinekî. Rihê edebiyatê, romanê, çîrokê meriv çawa bingeha wî datîne, ew hê nehatiye famkirin. Sedema vî tiştî jî ev e ku kurd naxwînin.

**Tu nifşên 80-90'î dişopînî? Bi ya te çawaye wêjeya nivşên nû?**

Pêşveçûn heye. Lê weke ku min got ewên ku dinivîsin jî wexta ku tu wan dixwînî tu dibîni ku xwendevanên pir baş nînin. Ewil divê xwendevarên pir baş bibin. Kesê nivîskar heke nexwîne, bîra wî nebaş e. Di nivîskariyê de bîr pir girîng e. Eger bîra te xurt nebe, tu pir nexwînî, bîra te xezîneya te dagirtî nebe tu nikarî berhemên mukemmel derxî. Ewên ku di vê dawiyê de dinivîsin, ez gelekên wan dişopînim. Hinek jê ber bi başiyê ve diçin, bi taybetî di çîrokê de. Mesela di edebiyata nivîskî de gere meriv Hawara Bedirxaniyan baş bixwîne, Ronahiya Bedirxaniyan baş bixwîne. Kurdên me yên Qafqasyayê, Rewanê, divê meriv wan baş nas bike.

**Em werin ser kekotiya Diyarbekirê. Tu dikarî hinekî di der heqê wê de jî yan bîraninên xwe yan jî tiştinan ji me re bibêjî, kekotiya Diyarbekirê maye an ziviriye tiştekî çawa?**

Bi xwedê nemaye, mixabin. Keko çi ye îcar? Keko, maneya wê, ew ê ku dikare destên xwe li ser însanan bide, ên derûdorên xwe, wana bibe, bi wan re xwarinê bixwe, bi wan re sohbetê bike, pirs bikin, ew jî bersiva wan bizanibe bide, bi awayekî mehkûmane û bê heqeret. Cilê xweşik li xwe bike, qirixî jî heye lê ew tiştekî din e. Îcar ez hem di nava kekoyan de bûm, hem jî pismanên min qirix bûn. Di diyarbekirê de bi rastî cewherek hebû. Xweşîtiyek hebû, kêfek tê de hebû. Di kekotiyê de. Qirixî, di wir de jî mêranî, cesaretek, mêrxasî heye. Jixwe heke tu mêrxas nebî, tu nikarî qirixî bikî ku. Ew asil cesaret û mêranî li wir hebû.

**Meriv bi çavekî dûrî ve li civata kurdan mêze dike, weke ku rewşeke 'xesandinê' li ser me ye. Bi ya te sedema vê çiye?**

Xesandina kurdan di 1700î de destpê kir. Yawûz Selîm û Îdrîs peyman çêkir. Asil ê ku osmanî çêkir wek sîstema sîyasî Îdrîs e, Yawûz kerekî dera hanê bû, eşqiyayekî bû, bi zorê çû Misrê, şûr nîşan da ji xelîfeyê re got dev ji xelîfetiyê berde ez xelîfe me. Yawûz tîpekî wisa bû. Lê aqilmendê wî Îdrîs bû. Wexta wê tiştekî îmze bikirana, peymanekê çêbikirana ji Îdrîsî re digotin qazeke vala bîne ez binivîsim tu jî here binivîse. Qxideeî vala didan ber Yawûz, îmze dikir, mora xwe lê dida, Îdrîs çi binivîsandana ew bû. Ev peymana Îdrîs û Yawûz heta 1700 ajot. Piştî 1700î ku li Fransayê ev pêla netewbûnê derket. 25 heb mîrnîşînên kurd hebûn. Ew mîrnîşîn bi yeko yeko dîsqalîfiye kirin. Dû re kurd hêsîr girtin. Di dema avakirina komarê de jî ew rewş domkir. Bi rêya dîn û hin tiştên polîtik ew dîlgirtin her berdewam bû.

**Di pêşneketina romannûsiya kurdî de toka herî mezin çi ye?**

Nexwendinî. Nivîskar û rexnegir, an jî ewên ku maqaleyan dinivîsin li ser edebiyatê filan, heya niha tiştekî wisa nekirine. Gava dinê min tiştekî got, min got "dexesî". Dibêje ku ez belkî li ser romana Xurşîd binivîsim ez ê pesnê wî bidim ma çawa ez pesnê kurdekî bidim. Diçî pesnê yekî dera hanê dide, beredayîyekî, mihacirekî nizanim ku derê ye. Heta ev dexesî hebe, ev zîhniyeta kevnikên kurdan ên nezanî hebe, nabe.

**Li ser siyseta kurdan ya heyî, serxwebûn û gelek tiştên aktuel tên axaftin. Tu li ser siyaseta kurdan ya heyî çi difikirî bo çar parçeyan?**

Ez li Parîsê dijîm û medyaya wan jî taqîb dikim. Di temamê tarîxê de potansiyela hezkirina kurdan ku aniha li dinyayê çêbûye, di temamî tarîxê de heya îro tiştekî wisa bo kurdan çênebûye, tu herî ji çopçiyê Parîsê pirs bikî bibêjî" Tu kurdan nas dikî." Wê bibêje "Kurd qehremanê dinyayê ne." Ev tiştekî zêde pozîtîfe. Neviyekî min heye, aniha 17 salî ye, nû nû ji polîtîkayê fahm dike. Ez ji Swêdê hatim virê, ez çûm dibêje "Kekê ez aniha bi kurdiya xwe serbilind im. Min got "Berxo heta niha tu neserbilind bûyî" Got na kekê heta niha me nas nedikir. Swêdî dibêjin kurd qehremanê dinyayê ne." Em û wan em pismamên hev in ,ew jî Arî ne, em jî Arî ne. Xwe kirin merivên me aniha îcar, gava menfeat li ortê bibe. Qatên emperyal qerar dane ku dewleta kurdan çêbikin, ev kesîn e.





## Çiyayê Kurmanc

# EF RÎN

**Welat Baz**

Wek tê zanîn Çiyayê Kurmanc ku nawenda wê bajarê Efrînê ye, li Rojavayê Kurdistanê heremeke sereke ye. Navê heremê ku ji mêj ve wek Çiyayê Kurmanc tê naskirin, di dema Osmaniyan de kurd dax, di dema frensiyan de Cebel Ekrad û di dema Baasiyan de jî wek Cebel Heleb hatiye guhertin. Balkêşê ku Çiyayê Kurmanc li Kurdistanê bi sedan sale herma yekta ye ku bi navê kurd hatiye naskirin.

Herema Çiyayê Kurmanc ji ber ku di navbera Derya Spî, Kurdistan û Sûrî de wek pirekî xezayî û xwedî erdnîgarêke dewlemende jî mêj ve bal kişandiye. Navenda vê heremê Efrîn li Kurdistanê yek ji cîhên herî kevnarê û xwedî dîrok û bermahiyên dewlemend e. Gelek kevir, zinar, lat û kelehên Çiyayê Kurmanc tevî nav û paşnavê mirovên deverê diyar dikin ku evder bermahîyên ji Hûriya ne. Hûrî ji bapîrên kurdan û li heremê yek ji şaristaniya herî kevnare ye. Pevya Hûrî li herêma Çiyayê Kurmanc di nav gelek kurdan de hîn jî wek paşnav tê bikaranîn.

Mînakek din navê Xaldî ye. Xaldî jî ji şaristaniyên Kurdistanê ne. Gelek kes ji herêmên Wêranşar û Serêkaniyê hîn jî xwe wek Xaldî dizanin. Gundê Xalda li Çiyayê Kurmanc yek ji gundên herî navdar û kevnare ye. Dîsa gundên Çiyayê Kurmanc yên wek Bahdîna û Gundê Dimilya, herêmên Bahdînan û Dêrsimê tîne bîra mirov.

Xaka Rojavayê Kurdistanê nawenda dewletên Hûrrî-Mîtanî bûye û paytexta vê dewletê Urkîş li herema Amûdê li Girê Moza ye. Di demên dawîn de bi taybetî li Rojavayê Kurdistanê; di kolanên li Girê Çaxirbazar, Telberek, Girê Leylan, Girê Mozan û li Girê Fexriya de gelek berhemên kevnarê hatine dîtin, ku heryek vedigerin hezarên salan.

Heta salên dawîn arkeologan bi texmînî cîhê peypexta dewleta Hûrî-Mîtanî zanibûn. Di sala 1982'an de arkeologên İtalî li nêzî Amûdê rastî Urkîşê hatin. Urkîş ku berî zayînê di salên 3 hezaran de hatiye avakirin yek ji bajarên herî kevn yê mirovahiyê ye. Berhemên ku ji vê heremê hatine derxistin niha li Helebê li Muzexane ya Dêra Zorê de ne.

Li heremê bi sedan deverên kevnarê ku li rûyê erdê ne hene. Çend ji deverên kevnarê yên heremê evin: Kela Semanê, Gundê Tîlanîsos, Qesra Beradê, Kefer Nabo, Kîmar, Soganekê, Bircikê Terpê, Dêrmişmîş, Gobelê, Kîlotê, Xerabê Şemsê, Gundê Mezin, Fafirtin, Bircika Silêman, Basûfanê, Birca Heyder, Keleha Basûtê, Eyndarê, Kurzêlê, Qîbarê, Cindirêsê, Şiyê, Nebî Horî yanê Sîros, Kela Canpolat û Kela Hawarê. Ev hemû dever xeml û dewlemendî û kevnariya vê herema Çiyayê Kurmanc e.

Yek ji bermahiyên herî balkêş û kevnare li herema Çiyayê Kurmanc, Şikefta Dûderiya ye. Di şikefta Dûderya de hestiyên ''Mirovê dema Niyandertal" hatiye dîtin ku temenê vî mirovî di navbera 50 û 100 hezar sal de tê texmînkirin. Ji ber vê taybetiya xwe Şikeftên Dûderya di alema arkeolojiyê de cîhekî taybetî digrin. Li aliyê din ev şikêfta ku li nêzî gundê Birca Evdalo ye navê xwe daye eşîrekî heremê jî. Şikeft 13 kîlometre dûri Efrînê ye. Li gor lêkolîn û bidestkevtên ku li heremê diyar bûne, dîroka Çiyayê Kurmanc berî zayînê heta salên 3 hezaran dirêj dibe. Salên 1200'ên berî zayînê dema İmparatoriya Horî-Mîttanî ye. Piştî dema desthilatiya Asûriyan, dema Med û Parsan heta salên 300'an didome. Piştî hatina İskender herem dibe yek ji nawendên Helenîzmê. Heta sala 637'ên piştî zayînê Çiyayê Kurmanc di destê Makedon, Roma û Bîzansiyan de dimîne. Di dema Helenîzmê de li Efrînê berhemên giranbiha tên danîn ku rêça gelek ji van berheman hîn jî li ser piyane.

### Welatê Selehedîn Eyûbî

Di sala 637'an de herem dikeve destê muslumanên Ereb. Artêşa erebên Musluman di bin fermandariya Ebû Ubeyd İbn Cerah de ketiye Çiyayê Kurmanc û heremê bê şer bindest xistiye. Çiyayê Kurmanc di serpêhatiya hezar salan de di nav Emewî, Eyûbî, Abbasî, Mendî û Memlûkiyan de dest guhertiye.

Çiyayê Kurmanc di dema hukumdariya Selehadînê Eyubî de yek ji nawendên girîng yê vê dewleta kurd bûye. Efrîn û Çiyayê Kurmanc tevî stratejîkbûna erdîma xwe û bi nêzikbûna kevîya Derya Spî û bajarên wek Ruha, Antakya, Şam û Helebê devereke girîng bûye. Gelek eşîrên ku ji çar aliyên Kurdistanê tevlî artêşa Selehedîn bûne di demên paş de jî li heremê manê û heta niha jî li wirin.

Li Çiyayê Kurmanc serdema Osmaniyan ji salên 1607'an destpêdike û heta sala 1918'an yanê piştî Şerê Cîhanê yê yekem didome. De dema desthilatiya Osmaniyan de bi dehan malbatên kurd ji cih û warên xwe hatine dûrxistin û koçî deverên din kirine. Ji van malbatan yek Canbûlatê kurd in ku di serhildanên dijî Osmaniyan de hatin sirgûnkirin û hîn jî li Lubnanê cîhwarin û serokatiya gelê Durzî dikin.



Navenda herema Çiyayê Kurmanc bajarê Efrînê ye. Şêniya Efrînê tevî gundan nêzî 200 hezarî ye. Herem ji navçeyên Cindirisê, Mabeta, Şêra, Şiyê, Reco û Bilbilo pêk tê. Ji bilî ev 7 xopanên Efrînê 263 gund jî bi bajêr ve girêdayî ye. Efrîn di warê pergala rêvebiriyê de navçeyeke bajarê Helebê ye.

Qezaya Efrînê bi giştî bi çiyayan xemilandiye. Li Rojavayê Kurdistanê herema yekta ya bilind Çiyayê Kurmanc e. Çiyayêm Kurmanc sîlsileya ji Rêzeçiyayên Toros e. Bilindahiyan girên heremê li seriya 1000 metreyî ne.

### Bajarê zeytûna

Firehiya xaka Efrînê 2033 kîlometreqare ye. Li Efrîne bi navên Cûmê, Meydankê û Kitêxê sê deşt hene. Li deştên Efrînê ji bilî kiştûkalê, lawirvanî jî tê kirin. Helbet dema Efrîn tê gotin zeytûn tê bîro mirov. Zeytûnên heremê navê Afrîinê bi cîhanê dane naskirin. Li heremê di navbera 13 û 18 milyon de darê zeytûnê hene. Li gor lêkolînên li ku heremê hatine kirin, hebûna darên zeytûnê li Efrînê digîje 12 hezar sal berî zayînê. Zeytûnên Efrînê bi qalîte, vîtamîn û mîneralên xwe di nav mînakên xwe de yên herî baş hatine hilbijartin. Li aliyê din ji ber kevnbûna teknîkê, awayên kenveşopî û xêrnexwaziya dewletê, Efrînê ji zêytûnê têra xwe feyde nastînin. Li Efrînê ji bilî zeytûnan bî deh hezarên darên sêv, hinar, hejîr û mişmişê jî hene. Werwiha li Efrînê çandiniya genim û ceh jî tê kirin.

Efrîn heta dema dagira frensiyan bajareke biçûk bû. Herem û bajêr bi Kilîsê ve girêdayî bû. Piştî dagirê heremê bi Helebê ve girêdan. Piştî ku sînorê navbera Tirkiye û Sûrî hat danîn, gelê herêmê ji sûk û bazara Kilis û Qirixanê hat qedexekirin. Pêwîstî bi navendeke nû peyda bû û dagîrkerên frensî bajarê Efrînê ava kirin. Di bihara 1927'an de, frensiyan gundî agahdar kirin, ku sûkeke nû ava dibe û wê sûk rojên çarşemê vekirîbe. Bi vî awayî berê bazirganiyê dan bajêr û evder wek nawenda rêvebiriya heremê hilbijartin.





### Qehremanê Efrînê Brahîm Henano

Piştî hatina frensiyan ya Sûrî û dabeşkirina serxet û binxeta Kurdistanê, di nav kurdan de li dijî dagirkeran nerazîbûn destpêkir. frensiyan guh nedidan hasasiyetên kurdan û haya wan ji mafên kurdan nîn bû. Ji ber vê yekê kurd li dijî frensiyan ketin tevgerê.

Ji ber gelek sedeman kurdan li Sûrî berî ereban li dijî frensiyan dest avêt tifingan. Di berxwedana li dijî frensiyan de fîşeka yekem ji alî Brahîm Henanoyê kurd ve hat berdan. Di pêvajoya dagire de li herema Çiyayê Kurmanc jî li dijî frensiyan berxwedanên bibandor hatin kirin. Di sala 1939'an de li herêma Çiyayê Kurmanc û Efrînê di bin serokatiya Şêx Îbrahîm de kurdên heremê serhildan. Tevgera Şêx Brahîm ku wek 'murîdî' dihat binavkirin, hêza xwe ji gundî û cotkaran distend. Serhildan dirêj ajot û gelek zirar gihîşt hêzên Frensî. Tolhildana frensiyan ya li dijî kurdan jî giran bû. Di encama êrişa frensiyan de gelek gundên Efrînê hatin valakirin û beşek ji gele heremê xwe avêtin Tirkiyê.

### Hêlîna eşîran

Efrîn di warê demoxrafya xwe ya netewî de jî devereke balkêş e. Li Efrînê ji Alewiyan heta Ezdiyan ji Dêrsimê heta Amedê gelek eşîr û malbatên kurd bicîh bûne. Eşirên kurd yên Çiyayê Kurmanc, wek diyarin evin: Amka, Şikak, Robarî, Biyan, Şêxan, Goçer, Dina, Heyştiya, Xastiya. Balkêşe ku gelek ji eşîrên Efrînê li çar aliyê Kurdistanê belavbûne.

Li Efrînê di salên dawîn de hin ereb jî bicîh bûne. Hijmara ereban nêzî 6 hezarî ye. erebên heremê bi giranî li bajarê Efrîn û Cindirêşê bicîh bûne. Malbatên Umêrat û Bobene yên ereb bi giştî zimanê kurdî diaxafin û qismek ji wan cil û bergên kurdî jî li xwe dikin. Rejimaa Baas piştî salên 1963'an ku dest bi siyaseta bêkurdbûna heremê kir, erdê kurdan bizorê ji wan stend û li ereban belavkir. erebên Çiyayê Kurmanc jî li gundên Deşta Cûmê û li her du aliyên çemê Efrînê bicîh bûne.



Li aliyê din ji herema Çiyaye Kurmanc gelek kesên welatparêz yên navdar jî derketine. Bi taybetî dengxweşên wek Cemîl Horo, Elî Tûjo û Xelîl Xemgîn bûne remza hunermendiya Efrînê.

Herwiha ji ber ku Çiyayê Kurmanc her tim ji bo welattparêz û berxwedêrên Kurdistanê re bûye hêlîn gelek şexsiyetên navdar; yên wek Doktor Nûrî Dêrsimî, Cegerxwîn, Reşîd Hemo jî li heremê bicîh bûne.



### Kela Hûrî

Helbet ji bilî dewlemendiya xezayî ya Çiyayê Kurmanc, herem ji alî berhemên dîrokî û bermahiyên şaristaniyan ve jî wek xezineyekî servekirî ye. Wiha diyar e ku li heremê ji sed hezar sal vir ve jiyan hebûye û ev xak tû car xalî nemaye.

Li heremê şaristaniya herî kevnare ku li pey xwe bermahî hiştiye Hûrî-Mîtanî ne. Wek tê zanîn Dewleta Hûrî ji bo parastina li erdîma ku hukum ajotiye keleyan avakiriye. Yek ji van keleyan Kela Hûrî ye. Ev kele 45 kîlometre dûrî Efrînê ye. Kele herçend bi navê Hûriyan tê naskirin û di dema wan de hatibe avakirin jî, di dema Madoparsan û Selokîdan de nav guhertiye û hatiye tamîrkirin.

### Kela Sîmon

Li aliyê din li heremê hin bermahiyên ji dema Madoparsan jî mane hene. Wek mînak Kela Sîros. Sîroz ku navdaneke Yûnaniye, navê xwe ji padîşah Korş stendiye. Herwiha hebûna çem û rûbaran yên heremê bûne sedem ku gelek pirên giranbiha jî bên avakirin ku hebûna wan heta îro jî didome. Herwiha yek ji berhemên ku navûdengê Efrînê gihandiye cîhana Xiristiyaniyê jî Ezîz Sîmon e. Ezîz Sîmon ku di sala 363'an de li Edenê hatiyê jiyanê û piştî dema xortaniya xwe li Efrînê bicîh bûye îro yek ji remzên Efrînê ye.

Kela Sîmon 20 kîlometre dûri bajarê Efrînê ye. Avahiya ku îro wek Kela Sîmon tê naskirin di demên pêşîn de tenê dêrekî bûye. Ev dêr di alema İsewiyan de yek ji dêrên herî kevn û herî mezin e. Di demên paş de di sala 970'an de di dema Bîzansiyan de ji ber balkêşiya wê li dora wê dûwarên keleyekî hatiye avakirin û evder wek bajarekî mezin bûye û li heremê bûyê yek ji nawendên ola Xristiyaniyê. Bajar hingê bi navê Tîlasonîs hatiye naskirin.

Yek ji bermahiyên Hûriyan li heremê Bajarê Eyndara ye. 5 kîlometre dûrî Efrînê ye û li seriya Çemê Efrînê ye. Eyndara bi erebî tê wateya Çavên Dara. Wek tê zanîn Dara yek ji padîşahên Mado-Parsan bûye. Ji nav ev bajarê kevnarê çemekî biçûk û kahniyekî diherike. Bajarê kevnare 5 kîlometre dûrî

# Barzanî û serxwebûn li ser bircên Amedê!

Mihemed Emîn Kan

Piştî ku Serokê Rêveberiya Herêma Kurdiskanê (RHK) di hevdîtina xwe ya bi nûnerên partiyên di parlemena Kurdistanê de got, "Heke hun li pişt min bisekinin ezê serxwebûnê ragihînim" li çar aliyên Kurdistanê jî piştgiriyên bi heman mebestê rû didin. Gelek partî, sazî û derdorên li deverên cûda bi çalakî û daxiyaniyan piştgiriya xwe nîşan didin. Herwiha li Amedê jî ciwanên kurd posterên Barzanî bi bircên Amedê de daliqandin û piştgiriya xwe nîşan dan.

Ciwanên Neteweyî yên Kurdistanê ku pirsgirêka kurdan weke pirsgirêka axê dibînin û hewl didin ku qelsiya netewperweriya kurd a li Bakur pihêttir bikin, bi çalakiyên xwe bala kurdan û raya giştî dikêşînin. Ciwanên Neteweyî ku herî dawî li ser bircên Amedê bi daliqandina posterê Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ketin rojevê, li ser çalakî û xebatên xwe bi me re axivîn.



## Bo dewletbûnê nijadperestî pêwîst e

Beriya ku em pirsa çimaniya daleqandina posterê Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) Mesûd Barzanî bipirsin me xwest em pêşî Komeleya Ciwanên Neteweyî yên Kurdistanê (KCNK) binasin. Berdevkê KCNK'ê Bextiyar Onen di vê bareyê de angaşt ku ji ber di nav gelê Başûr de ruhê netewperestiyê nemaye me xwest em vê komeleyê ava bikin û bi çalakiyên xwe ruhê netewperweriyê li gelê kurd vegerînin. Onen pirsgirêka kurd weke pirsgirêka axê wesif kir û got:

"Heta ku em li ser axa xwe azad nebin, em tu carî nikarin rihet rakevin. Armanca xebatên me bi piranî guhertina ramanên gel e. Em dixwazin ku gelê me were ser ramana berê ya netewe-dewletxwazî ango serxwebûnxwaziyê. Ji ber ku ev ruh, di mêjiya civaka kurd de ne nemaye. Divê nijadperestiya berê vegere. Lewre em tenê dikarin bi vî awayî xwe xelas bikin. Ger em bala xwe bidin Fransayê; Şoreşa Fransiyan, şoreşeke nijadperestî ye. Gelên bêdewlet, bi vê ramanê bûne xwedî dewlet. Divê em jî wisa bibin, ji ber ku niha dewleta me tune ye. Piştî ku em bibin xwedî dewlet, wê demê divê em nijadperestiyê ji ser xwe rabikin. Lê ji bo ku em bibin xwedî dewlet divê em nijadperest bin. Hin derdorên siyasî dibêjin ku hûn ne fermî ne , em dixwazin bersiva vê yekê wiha bidin: Ger ku em herin û ji dagirkerên xwe fermiyetê bixwazin, wê demê em ne durust in, heke ku em li ser meseleya Kurdistanê mijûl dibin û em bibêjin we Kurdistanê dagir kiriye hûn dagirkerên Kurdistanê ne û em herin ji bo çalakiyên xwe destûrê ji wan bixwazin, naxwe em xelet in. Ji ber ku berê Partiya Demokrat a Kurdistanê(PDK) jî li hember Saddam ne fermî bû. Em jî li hemberî dagirkerên xwe ne fermî ne û ew yek ji bona me şerefek e"

## "Barzanî bo me serok e'

Di derbarê siyaset û rola Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî de jî Onen tîne ziman ku Mesûd Barzanî, ji bo wan Serokê Kurdistanê ye û wiha dom dike: "Bi taybetî di demên dawî de ji ber ku ji bo Kurdistanê serxwebûnê dixwaze em piştgiriya wî dikin. Lê belê ev nayê vê wateyê ku em peyrevên wî ne. Ji bo serxwebûna Kurdistanê ew çi kar û xebat û çalakiyan bike em ê li pişt wî bin û em ê piştgiriya wî bikin. Lê belê ger ku li dijî berjewendiyên Kurdistanê tiştekî bike, wê gavê em dikarin wî rexne jî bikin"

## 'Poster peyama piştgiriya serxwebûnê bû'

Piştî danasîna komele û hînbûna ramanên Komeleya Ciwanên Neteweyî em hatin ser mijara daleqandina posterê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û me sedemê vê yekê ji Onen pirsî. Onen diyar kir ku sedemê daleqandina posterê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ya li ser bircên Amedê peyama piştgirîdayîna helwesta wî ya serxwebûna Kurdistanê bûye û dom kir: "Em bi hevalên xwe re şêwirîn. Me got; Gelo em dikarin çawa piştgiriyê bidin vê daxwazê. Jixwe me ji berê ve serlêdana Pêşmergetiyê kiribû. Me got; Em jî dikarin posterê Serok Mesûd Barzanî li birca Amedê daleqînin. Sedema ku wateya bircên Amedê jî ji bo me Kurdan cuda ye. Me xwest em li ser bircên Amedê postera wî daleqînin û me daleqand. Me bi vê şêweyê piştgiriya xwe ji bo Mesûd Barzanî ragihand. Heke ku gazî me bikin em aniha jî amade ne ku biçin Başûrê Kurdistanê û di eniyên şer de bi Pêşmergeyan re mil bidin hev û têbikoşin. Ji ber ku em xort in, em xortên Bakurî ne, em ji bo serxwebûna axa Bakur dikarin herin li wê derê şer bikin û ew jî dikarin werin li vê derê şer bikin. Ji ber ku Kurdistan yek perçe ye û xaka Başûr ne tenê xaka gelê Başûr e, xaka hemû Kurdistanê ye"

Berdevkê KCNK'ê Bextiyar Onen di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku piştî vegera ji Amerîkayê ya Barzanî ku gotibû; 'Heke hûn li pişt min bin, ez ê îro serxwebûna Kurdistanê olan bikim' wan xwestiye ku piştgiriya xwe ragihînin û bi vê mebestê vê çalakiyê pê hanîne. Onen ragihand ku ev çalakî ji bo wan çalakiyeke piçûk e û ger ku pêwîstî hebe ew dikarin biçin eniyên şer û li dij DAIŞ'ê jî şer bikin.

## 'Amedê êdî ji tu tiştî natirse'

Di derbarê eleqeya gelê Amedê ya ji bo çalakiya wan a daleqandina posterê Barzanî de jî Onen angaşt ku berê gel ditirsiya û hesta dilê xwe nedihanî ziman û dom kir: "Hin aliyan dijîtiya Serok Barzanî dikirin û yê ku ji serok Barzanî hez dikirin jî, ditirsiyan û nikaribûn hest û ramanên xwe bînin ziman. Piştî ku me ev tişt kir, gelê me têgihîşt ku hewceyî tirsê nîne. Serok Barzanî, serokê her çar perçeyên Kurdistanê ye û di rêya serxwebûne de, li gor şert û mercên niha em tenê dikarin xwe bi wî bigirin. Ji bilî wî kes nikare serxwebûna Kurdistanê pêk bîne. Ew poster du roj ma û bala gelê me kişand. Ji ber ku me dît hemû gelê Amedê posterê dîtin û piştgirî danê, me nexwest wêneyê Mesûd Barzanî bikeve destê dagirkeran û me bixwe rakir. Poster hê jî bi me re ye. Em wek Ciwanên Neteweyî yên Kurdistanê dixwazin piştî vê çalekiyê, ji bo piştgiriya peyama Barzanî, kampanya îmzeyan li dar bixin. Di demeke nêz de em ê vê çalekiyê jî li dar bixin"

## 'Divê hemû kurd piştgiriyê bidine Barzanî'

Endamê Komeleya Ciwanên Neteweyî Kamîran Eyub ku ku ji herêma Qamişlo, ji bajarê Tirbesiyêya Rojavayê Kurdistanê ye û niha li Amedê dijî jî anî ziman ku ji bo serxwebûna Kurdistanê şerta sereke yekîtiya kurdan e û da zanîn ku ew dixwazin gelê kurd bi tevahî destê hev bigirin û yekîtiya xwe pêk bînin. Eyub got: "Daxwaziya me dewleta Kurdistanê ye. Ji bo vê yekê divê em pişta hev bigirin û bi hev re rast bin. Tu ferqa me ji hev tune ye. Pêwîst e ku em ji bo mafên xwe ber xwe bidin û ji bo tadeyiya ku li me tê meşandin divê em heqê xwe bistînin. Ji bo vê yekê pêwîst e ku em piştgirî bidine Serok Mesûd Barzanî. Ger ku em li Başûr dewleta xwe ava bikin wê perçeyên din jî serbixwe bibin" Kamîran Eyub anî ziman ku ji bo serxwebûna Kurdistanê pêwîstî bi wê yekê heye ku her çar perçeyên Kurdistanê bi yek dengî serxwebûnê bixwazin û piştgiriyê bidin Mesûd Barzanî. Eyub got: "Îro Başûrê Kurdistanê rizgar bibe, sibê wê perçeyên din jî dikaribin serxwebûna xwe olan bikin û ji destê dagirkeran derkevin. Ew ê ji bo me bibe piştgiriyeke pir mezin û em bawer in ku Serok Mesûd Barzanî wê di vî warî de jî piştgiriya herî mezin bide me. Tu kurd tune ye ku di dilê wî de Kurdistana serbixwe tune be. Ji ber vê yekê, divê hemû partî û rêxistinên kurdan piştgirî bidine vê daxwazê"

## Qampanya fireh dibe

Herwiha qampanyayên piştgiriya serxwebûnê her ku diçe mezintir dibe. Nivîskarên malpera Kurdistanaktuel jî qampanyayeke îmzeyan dan destpêkirin û piştgiriya xwe nîşan dan. Li hêla din li Stenbolê jî komek ciwan li parka Saraçhane ya Fatihê civiyan û bi alên Kurdistanê û posterên Barzanî piştgiriya xwe nîşan dan.





# Rûreşiya zindana Amedê ji bîrdankê derdikeve

Tuwanê Dodkî

Piştî şêwira Şaredariya Amedê, Weqfa 78'iyan, TUHAD-FED, MEYADER, İHD û TMMOB û hin dezgehên din ên Amedê, biryar hate stendin ku Zindana Amedê veguheze Mûzeya Mirovahiyê. Piştî gellek xebatên ji bo vê kiryarê, tê gotin ku ji ber konjuktûrê hikûmet jî erênî nêzîkî veguhestinê dibe. Berdevkê Weqfa 78'iyan Celalettîn Can da zanîn ku tapoyê zindanê di dest TOKİ'yê de ye û ew ê hewl bidin ku TOKİ nebe asteng.

Zindana Amedê yan jî bi navê xwe yê din 'Zindana 5 No' ku di dema derba leşkerî ya 12'ê Îlonê de bi skenceyên hov û bêrûmet û kuştina gellek zindaniyên kurd, di birdanka kurdan de bû birîneke mezin û ji gellek pirtûk, fîlm û belgefîlman re bû mijar, bi helwesta Şaredariya Amedê, dezgehên sivîl û zindaniyên wê demê, dibe Mûzeya Mirovahiyê. Bi vê mebestê xebatên ku di sala 2011'an de bi kampanyaya belevkirina îmzeyan destpê kiribû, di 18'ê Gulanê de bû weke helwesteke fermî û bi xebatên 'Lijneya Bila Zindana Amedê bibe Mûze' li Qada Sumerparkê 'Navenda Koordînsyona Zindana Amedê' hate damezirandin û ev navend bi merasîmekê hate vekirin. Ev navenda ku wê hemû xebatên di derbarê veguhestina zindanê ya ji bo bibe mûze lê bêne kirin, her wiha wê serkêşiya hemû kiryarên fermî û berhevkirina belge û amûrên di derbarê girtîgehê da jî bike. Di merasîma vekirina navendê ku hevşaredarên Amedê Firat Anli, Gultan Kişanak, Civaknas Îsmaîl Beşîkçî, Helbestkar Eşber Yağmûrderelî, Serokê İHD'ê Öztürk Türkdoğan, hin kesên ku wê demê di zindanê de mabûn, xizmên qurbaniyên zindana Amedê û gellek kesên din beşdar bûn de Firat Anli anî ziman ku kiryarên Zindana Amedê yên feraseta 12 Îlonê ne tenê li dij serok û rêvebirên rixistinan, li dij gel hatine kirin û got: "12'ê Îlonê êrîşeke mezin a li ser bîrewerî, çand û ronakbîriya gelê me bû. Lê belê bi saya mîraseta ew şehîdên ku canê xwe kirin agir û berê vê ferasetê dan û hemû şehîdên wê zindanê, em îro li vê derê ne. Mekan, bîreweriya mirovan in.  û em ê nehêlin ku bîreweriya me têk bibin."



## Beşîkçî: Divê bîrdanka civakî bê tomarkirin

Di merasîma vekirina navendê de Civaknas Îsmaîl Beşîkçî jî diyar kir ku li dij veşartin û nediyarkirina arşîvên dewledê, divê ev mûze jî bibe arşîva civakê. Beşîkçî got: "Dema mirov biçe serî li dezgehên dewletê bixe da ku arşîvan ji me re veke, wê dewlet tu arşîvekê şani mirov nede. Ji ber vê yekê di vê mûzeyê de divê bîrdanka civakî bê tomarkirin" Beşîkçî diyar kir ku veguhestina mûzeyê ya zindana Amedê ji bo tomarkirin û parastina bîrdanka civakî xebateke bir baş e. Serokê Daîreya Pihêtkirina Aboriya Herêmî ya Şaredariya Amedê Necatî Pîrinççîoglû jî da zanîn ku bi saya Lijneya Dadê û Lêkolîna Rastiyan a Zindana Amedê, ji sala 2008'an ve, di vê mijarê de gellek xebat hatine kirin, Şaredariya Amedê ji bo zindan bibe mûze bi Weqfa 78'iyan, TUHAD-FED, MEYADER, İHD û TMMOB'ê re xebatan daye meşandin, nîqaşan pêk hanî ye û piştî van xebat û nîqaşan biryar hatiye stendin ku zindana Amedê bibe mûze û bi vê mebestê ev navend hatiye damezirandin.

## 'Dîplomasî pêwîst e'

Di derbarê mijarê de Berdevkê Însiyatîfa Yekîtiya Partiya Demokrat a Kurdistan(PDK) li Bakur Ahmed Acar ku ew jî yek ji girtiyê zindana Amedê yê dema 12 Îlonê ye ji Rojnameya me re ragihand ku ew van xebatan pir erênî dibînin û ji bo alîkariyê çi ji destê wan bê ew amade ne ku bikin. Acar grîngiya van xebatan û anîna rojevê ya vê mijarê destnîşan kir û wiha dom kir: "Divê rêxistin û dezgehên sivîl û hemû kes, ji bo vê helwesta veguhestina Zindana Amedê ya ji bo Mûzeya Mirovahiyê, bi hemû şêweyî mijarê bînin rojevê û li ser desthilatdarî û hikûmetê zexteke medyayî pêk bînin da ku ji vê daxwazê re nebe asteng" Acar ji bo vê helwestê grîngiya dîplomasiya li Ewropa û dinyayê jî destnîşan kir û anî ziman ku divê kurd û hemû kesên ku ji ew rûreşiyên ku Cûntaya 12'ê Îlonê li zindana Amedê pêk anîbû ne razî ne xebatên dîplomasiyê pêk bînin. Acar got: "Dîplomasiya ku ez qala wê dikim ne tenê dîplomasiya nava Tirkiyeyê ye, her wiha dîplomasiya li Ewropa û li hemû dinyayê ye"

## Celalettin Can: Me belgeyan tomar kirî ye

Berdevkê Weqfa 78'iyan Celalettîn Can ku ew jî yek ji mexdûrên 12'ê Îlonê ye, di derbarê vekirina navendê û karûbarên veguhestina Zindana Amedê ya ji bo mûzeyê de pirsên me bersivand. Can, da zanîn ku ji bo kiryarên cûntaya 12'ê Îlonê yên ku di zindana Amedê de pêk haniye aşkere bibin, di 2007'an de wan Lijneya Dad û Lêkolînê ya Rastiyên Zindana Amedê ava kirî ye û heşt salin hewl didin ku rastiyan şanî civakê bidin. Can diyar kir ku di vê demê de wan bi 517 mexdûrên zindana Amedê re hevdîtinan pêk anî ye û 700 seet dîmenên wan tomar kirî ye. Can got: "Piştî lêkolînên me xwe gihand gellek wêne û belgeyên din û bê navber me ew bi çapemenî û raya giştî re jî parve kir. Me li Amed, Enqere û Stenbolê sempozyûmên berfireh li dar xist û li gellek bajaran me pêşangehên wêneyên zindana Amedê yên dema 12'ê Îlonê vekirin. Me bi rayedarên hikûmetê re hevdîtinan pêk anî û me hewl da ku em di derbarê sûcdarên zindana Amedê de lêpirsînan vekin. 500 hevalên me serî li dadgehê dan û di encama van serdanan de, ji alî Serdozgeriya Amedê ve lêpirsîn hatin vekirin"



## 'Tawanê mirovahiyê bû lê xwestin ku ji demborîtiyê betal bikin'

Celalettîn Can da zanîn ku di lêpirsînên di derbarê tawanbarên zindana Amedê de ew heta radeyekê çûne lê, dûre rastî astengiyan hatine û hatiye xwestin ku doz jj demborîtiyê bêne betalkirin. Can got: "Ev tawanên ku di zindana Amedê de pêk hatine her çiqas tawanên li dij mirovahiyê bin jî hatin xwestin ku weke tawanên normal bêne rîşandan û ji ber demborîtiyê bêne betalkirin" Celalettîn Can di derbarê xebatên veguhestina zindana Amedê ya ji bo mûzeyê de jî da zanîn ku li gel van xebatên aşkerekirina tawanên di vê zindanê de pêk hatine, wan xwestiye ji bo rûmeta mexdûrên vê zindanê û rûbirûbûnê, ev zindan bibe mûze û ji bo vê yekê wan dest bi hewldanan kirî ye. Can got: "Ji bo vê yekê me kampanyayeke îmzeyê da destpêkirin. Paşê me ew îmzeyan pêşkêşî Lijneya Daxwaznameyê ya Parlamentê kir. Lijneyê jî ew îmzeyan pêşkêşî Wezareta Dadê, Wezareta Karên Navxweyî, Wezareta Bergiriyê û Wezareta Çandê kir. Ji van dezgehan nêrînên erênî hatin bihîstin. Paşê me nimûneyên wan îmzeyan pêşkêşî Şaredariya Amedê jî kir. Gultan Kişanak

Kalê Badî

# Li Batmanê bayê şanoyê

6. Mihrîcana Rojên Şanoyê ya Batmanê ku ji alî Şaredariya Batmanê ve, di 20'ê Gulanê de destpê kir, bi bernameyeke dewlemend ku bi hemû komên profesyonel û amator ên kurd û bi hin çalakiyên cihê yên hunerî bi encam bû. Di mihrîcana ku bi drûşma 'Ji Bo Jiyaneke Nû Şanoya Bêsînor' destpê kir de gel û bi taybetî şanohezên Batmanê fersenda temaşekirina hemû berhemên şanoyî yên kurd ku derfet nabînin xwe bigihînin ê ditin.

**Şano daket kolanan**

6. Mihrîcana Rojên Şanoyê ya Batmanê ku di 20'ê Gulanê de destpê kir, di 24'ê Gulanê de bi coşeke mezin bi dawî bû. Di vê mihrîcana ku ji perçeyên din ên Kurdistanê û hin bajarên Tirkiyeyê ji hin komên şanoyê beşdarî lê kirin de gelê Batmanê û bi taybetî şanohezên Batmanê çend rojên bi coş ên şanoyî derbas kirin. Di mihrîcana ku li kuçe, kolan û hin gundên Batmanê ji leystikên şanoyê hatin pêşandan de li gel pêşandana şanoyê, xebatên kargehî yên hin hunerên din û konsêrtên mûzîkê jî pêk hatin.

Di derbarê mihrîcanê de Serokê Daîreya Çand û Hunerê ya Şaredariya Batmanê Ahmet Bulent Tekîk da zanîn ku ji komên cûda yên Kurdistanî ku yên Başûrî jî di nav de û yên Tirkiyeyê nêzîkî 15 kom beşdarê mihrîcanê bûne û ev komên şanoyê 25 leystik pêşanî şanohezên Batmanê dane. Tekîk ragihand ku ji van van koman 13 jê komên kurd û 2 kom jî yên tirk in, di nav van leystikan de her wiha leystikên zarokan jî hene. Tekîk got: "Me xwest ku ji çar perçeyên Kurdistanê şanoger tevlî mihrîcanê bibin. Ji Başûrê Kurdistanê ji Duhokê koma 'Şanoya Hunerê ya Duhokê' û ji Slêmaniyê jî koma 'Şanoya Aktor' du kom beşdarê mihrîcanê bûn. Ji Rojhilat mamoste Kanî bi performansa xwe ya pandonîmê beşdar bû. Ji Rojava jî wê kom bihatana mihrîcanê, lê belê ji ber pirsgirêka derbasbûna ji sînor, ji rojava kom nekaribûn bêne Batmanê. Ji rojavayê Tirkiyeyê jî ji İzmîrê koma Seyyar Sahnesi' û ji Stenbolê jî Koma Şanoyê ya 'Duvara Karşı' beşdar bûn"





**Şano çû gundan**

Ahmet Bulent Tekîk di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku mihrîcana Şanoyê ya Batmanê bi beşdariyeke mezin ku wan qet hêvî nedikir bi encam bû û diyar kir ku ev beşdariya mezin û coşa gelê Batmanê wê yekê şanî me dide ku di mihrîcanên siberojê de em bernameyên xwe mezintir û berfirehtir bimeşînin. Tekîk got: "Bi raya me sedemê vê beşdarî û coşê ew e ku gellek leystikên me li kuçe û kolanan, di nav gel de pêk hatin." Tekîk balê kêşa ser taybetiyeke vê mihrîcanê û da zanîn ku yekem car e wan li gundan jî leystikên şanoyê yên ku ji alî pisporên şanoyê ve hatine amadekirin pêşan daye û ev yek di warê pêwendbûna gundên Kurdistanê û şanoyê pêşketineke mezin e. Tekîk got: "Di çarçoveya mihrîcanê de li gundên Batmanê Aqûba û Bleyderê jî leystikên şanoyê pêşan dan. Ev jî bo me pir girîng bû lewre mixabin çand û huner tenê bi ser bajaran tê bi watekirin û gund weke wargehên ji çand û hunerê dûr in têne nasîn. Bi vê helwestê me xwest em li gundan jî xebatên çand û hunerê pêk bînin û wê baweriya çewt ji holê rakin"



**Ji bo zarokên kampa Şengalê kargehên şanoyî**

Ahmet Bulent Tekîk di dawiya axaftina xwe de ragihand ku ji bo meyldariya şanoyî ya zarokên ezdî yên li kampa Şengaliyan baştir bibe, wan 10 roj beriya destpêka mihrîcanê kargeheke şanoyî vekiriye û ev zarokên ku di van kargehan de 10 roj hatine perwerdekirin, bi leystikên xwe yên skêçî beşdarî mihrîcanê bûne. Tekîk diyar kir ku ev xebat, ji bo zarokên ku ji ber şer ji mal û warên xwe hatine qewirandin bûne weke xebatên rehabîlîteyê û hêviya wan ew e ku di demên pêş de ji ji bo şiyaniya van zarokên Şengalî ya şanoyê baştir bibe xebat bêne kirin.

**Zarokên Şengalî bi şanoyê li dij travmayên xwe têkoşiyan**

Şanoger Baran Demîr ku wek şanoger di kargehên şanoyî de perwerdehiya şanoyê da zarokên Şengalî ji ragihand ku di destpêkê de zarokên Şengalî ji ber ku tîna travmayên ku jiyabûn ji xwe nehavêtibûn, bê dil bûn û beşdarê xebatan nedibûn, lê roj bi roj ji ber ku bi xweşî û kelecana xebatan têkildar bûn, bi awayekî çalak beşdarê xebatan bûn. Demîr got: "Ez dikarim bêjim ku zarokên Şengalî bi saya vê kargehê û xebatên şanoyê hewl dan ku li dij taravmayên ku ji ber şer û penaberiyê der bûne têbikoşin. Di destpêkê de kêm kes beşdarê xebatan bûn, lê belê roj bi roj hejmara wan zêde bû û di dawiyê ji ji ber ku hemû zarok hatin ez bêçar mam ku beşdariyê rawestînim, lewre êdî di kargehê de cih nema"

Baran Demîr da zanîn ku di kargeha şanoyê de wî di destpêkê de perwerdehiya şanoyê daye zarokên Şengalî û dûre wan dest bi leystina skêçên jixweberî kiriye, di encama van xebatan de 4 leystikên baş derketine holê, ew li ser wan leystikan hûr bûne û di encamê de ji zarokên Şengalî bi van leystikên xwe derketine pêşberî şanohezan û leystikên xwe pêşkêşî gel kirine. Demîr da zanîn ku ji bilî perwerdehiya şanoyê bi alîkariya hunermendên maskan wan perwerdehiya kuklayên tiliyan jî daye zarokan û ji ber ku pir bala wan kêşa ye wam kelûmelên çêkirina kuklayên tiliyan daye zarokan da ku piştî mihrîcanê jî vî karî bidomînin.

**Mihrîcan ji bo hevnasînê pir derfetdar in**

Şanoger Baran Demîr di derbarê pêwendiyên di navbera endamên komên şanoyê yên ji bajar û welatên din de ji destnîşan kir ku mihrîcan ji bo hevnasîna huner û hunermendên ji bajar û welatên din derfetên bêhempa pêk tînin, lê belê di vê mihrîcanê de wan zêde derfet neditine ku şanogerên cûda binasin. Demîr got: "Koma Şanoyê ya Aktor a ku ji Slêmaniyê hatibû pir şareza bûn. Bi Koma Şanoyê ya TAG a alman re xebitîne û berhemeke baş derxistine holê. Min qet hêvî nedikir ku ev çend serkeftî bin, lê gellek şareza û serkeftî bûn" Demîr gazineke xwe ji mihrîcanê jî hanî ziman û got: "Me xwest ku bi leystikvanên şanoya Aktor a Slêmanî û hemû komên din ên ku ji derveyê Bakurê Kurdistanê hatine re têkiliyan deyînin û bi wan re danûstendina tecrûbeyan bikin. Lê belê ji ber ku li gor organîzasyonê komên ku pêşandana leystikên xwe dikirin, beriya mihrîcan bi dawî bibe ji Batmanê diçûn me derfet nedît ku wan re danûstendinan bikin"

**Mihrîcan bi kurdî bû**

Di 6. Mihrîcana Şanoyê ya Batmanê ku bi drûşma 'Ji bo jiyaneke nû şanoya bê sînor' pêk hat de, li gel Koma Şanoyê ya Dezgeha Hunerê ya Duhokê, Şanoya Aktor a ji Slêmaniyê, koma pandomîmê ya Rojhilatê Kurdistanê û du komên ji Tir-





# Zarokên Amedê bi rîtmên sirûştî distrên

Evîndar Tekîn

Hemû perwerdekar di wê baweriyê de ne ku mûzîk, ji bo perwerdehiya zarokan hunera herî girîng e. Mûzîkjenê hêja Şêrko Kanîwar jî bi vê baweriyê heldiweste ku zarokan nêzîkî mûzîkê bike û mûzîkê bike perçeyek jiyana wan. Bi vê mebestê bi 1000 zarokan Orkestraya Rîtmên sirûştî ava kir û derfet da van zarokan da ku hunerên xwe pêşkêşî mezinên xwe bikin.

**1000 tekoşerên mûzîkjen Zarok bi mûzîkê geş dibin**

"Mirovên ku di giyana wan de mûzîk tune ye û bi kela newayên şêrîn nakevin, afirînerên xerabiyêne. Dilê wan jî şevan tarîtir in û bengîniyên wan jî dojehê bi şewattir in" Wiha dibêje nivîskarê navdar ê îngilîz William Shakespeare. Mûzîkjen Şêrko Kanîwar jî bi vê baweriyê 1000 zarokên Amedî li hev civand û bi alavên wek; karton, şûşe, binik, keybordên kompûteran, qutîkên avê û gellek alavên din ên avêtî orkestrayeke sirûştî ya zarokan pêk hanî. Kanîwar, piştî gellek xebat û provayan li Amedê li Salona Werzişê ya Sergirtî ya Seyrantepeyê bi van zarokan konsêrteke serkeftî pêk anî. Bi vê mebestê me xwe gihand mûzîkjen Kanîwar û me di derbarê zehmetî û xweşiyên avakirina orkestraya zarokan de pirsan jê kir û wî jî bi dilgermî bersiv da me.

**Ramana lidaristina vê orkestrayê çawa peyda bû û çima zarok?**

Ev orkestra ji 2006'an ve yanî 8 salin heye. Me her havîn, zarokan dibir Kampa Zarokan a Şardariya Amedê. Ji min xwestin ku ez jî wek perwerdekarê mûzîkê hefteyekê bi zarokan re bilin bibim û di derbarê mûzîkê de hin xebatan bikim. Di nava hefteyekê de min nikaribû wan hînî amûreke mûzîkê bikim. Me koroyek ku ji 50 zarokan pêk dihat pêk hanî. Em li peravê Gola Hezarê bûn. Şevekê me bi koma kampê re civînek çêkir. Kêliyek sirûştî û bêdeng bû. Dengê çirçirkan dihat. Min got ka bi amûrên xwezayî bi van zarokan re tiştekî bikim. Dema ez çûm min qet amadekariyek nekiribû da ku em karekî mûzîkê bikin. Di wê kêliyê de, bi awayekî sirûştî ji nişkê ve di serê min de ev fikir çêbû ku em xebateke bi vî rengî pêk bînin. Min nizanibû ku ew ê tiştekî çawa derkeve holê û ez ê dikaribim berdewam bikim an na. Piştî em vegeriyan, me şûşe û hin tiştên din ji ser sergoyan berhev kir, şûşt û paqij kir û me dest bi vê xebatê kir. Bandoreke xweş li min kir û min pir jê hez kir. Lê bandora ku li zarokan kir nayê gotin. Ew guherîna ku di zarokan de çêbû! Me ji ew amûrên kêrnehatî ku sirûşta bajar têk dibin, orkestreyek ava kirin, deng ji wan derxistin û bi wan re stranan gotin. Vê yekê bandoreke mezin li zarokan kir û pir acêbmayî man. Zarokên ku pir şermok bûn û di nav civakê de nikaribûn xwe bînin ziman, di vê orkestrayê de bûn endamekî orkestrayê û entrumaneke wan çêbû. Karê min wê çaxê nû destpê kir, min got divê ev orkestra neqede. Ji 2006'an heta niha her sal, bê navber bi zarokên cuda cuda. Ji bilî van zarokan heta niha zêdeyî 5000 zarok di vê orkestrayê de derbas bûne, zarokên cuda re ez vê xebatê didomînim. Hinek ji wan aniha kemanjen, tembûrjen, piyanîst in, çeloîst û defjen in. Di vê orkestrayê de perwerde bûn. Ji ber ku di vê xebatê de me dît ku bandoreke mezin û erênî li zarokan dike, Me got em hejmara zarokan zêdetir bikin.

**Di perwerdehiya zarokan de girîngiya muzîkê çi ye?**

Mûzîk, aramî û bengîniyê dixe hiş û dilê mirov û ruhê mirov bi rêkûpêk dike, terbiye dike. Civakîbûna mirov xurt dike. Mûzîk, şermokiya mirov, bi taybetî jî ya zarokan dişkêne. Kesên gihandî jî dema bi muzîkê re mijûl dibin, di destpêkê de pir şermok in, lê paşê karîna wan çêdibe ku hestên xwe bi mûzîkê der bikin. Mirov, dikarin xwe bi hemû beşên hunerê bînin ziman, lê belê mûzîk giyanê mirovan dixe nava aramiyê û di nav vê aramiyê de konsantrasyon, baldarya wan baştir dibe û ji hêla zimanê zikmakî û xebatên komelî ve wan xurtir dike. Di van xebatan de her wiha zarok hînî sebirkirinê jî dibin. Bi seetan rûniştî dimînin, lê pir aciz nabin. Bi hev re sohbetê dikin û li hev guhdarî dikin. Her wiha hînî mafên xwe û yên hevalên xwe û pê re girêdayî hînî gelek taybetiyên jiyana civakî dibin.

**Bi vê xebatê armanca we çibû?**

Me gotibû em xwe bigihîjin pir zarokan. 1000 zarok pir nînin. Em li Amedê dijîn. Li Amedê di navbera 3 û 14 saliyê de nêzîkî 400 hezar zarok hene û tenê hezar zarok li vir in. 399 hezar zarok ne li vir in. Ji vê hêlê de ez xwe serketî nabînim. Ji ber ku me xwe negihandiye 399 hezar zarokên Amedê. Ne haya me ji wan heye, ne haya wan ji me heye. Dema em bi wî awayî lê binêrin, ez pir xemgîn dibim. Lê dîsa jî ez kêfxweş im ku em gihîştine 1000 malbatan û bi 1000 zarokan re hatine cem hev. Dema ku em her malbatekê xwedî 4-5 neferan bifikirin, ev dike 5-6 hezar kes. Bi vî awayî mûzîka kurdî û girîngiya mûzîka kurdî ketiye her malê. Her wiha hişmendiya parastina sirûşt û hawirê jî ketiye dilê 1000 zarokan û pê re girêdayî dilê 1000 malbatan. Ji vê hêlê ve ez pir kêfxweş im.

Di vê xebatê de tiştê herî girîng ne pêkanîna muzîkê ye. Angaşkeke min ku em mûzîkeke pir baş û profesyonel çêdikin tune ye. Derdê me zarok in. Bila xwe baş bînin ziman, hînî xebata hevpar bibin. Bila hestên xwe bi reya mûzîkê bînin ziman û bi xebatên komelî bi hev re parve bikin, hev guhdarî bikin, civakîbûna xwe xurt bikin û bila bi van rewşên erênî kêfxweş bibin. Ez kêfxweşiya wan a giyanî di çavên wan de dibînim û hest dikim.






**We çawa xwe gihand van zarokan?**

Me bi taybet ji bo vê xebatê kampanyayek neda destpêkirin. Me bida destpêkirin em ê di binî de bimana. Wê bi sedhezaran zarok bihatina û me yê nikaribûya ji binî derketana. Hemû zarokên ku hatin Konserwatûara Aram Tigranê, serî li hin beşên din dan. Me got; ' Ev xebat jî hene, hûn dikarin serî wan jî bidin. Pêşî me got bila zarokên ku temenê wan di navbera 7 û 14 salî de ne bên. Lê ji ber baldariya malbatan û tecrubeya konsêrta par a zarokên 4 salî, me li Mûzeya Bajar a Cemîl Paşa, li Navenda Çandê ya Cegerxwîn û li Konserwatûara Aram Tigran vê xebatê meşand. Li van navendan zarokên nêzîkî wan û zarokên Navenda Piştgiriya Zarokan a Sumerparkê, yên dibistana Ferzad Kemanger û her wiha zarokên kampa Şengalê jî hatin perwerdehiya rîtmên sirûştî û beşdarê vê xebatê bûn Me her hefte zarokên Şengalê bi otobasan dihanîn Konserwatûara Aram Tigranê.

**Şerko Kanîwar kî ye?**

Şêrko Kanîwar, an jî bi nasîna zarokan 'Mamoste Şêrko' ji sala 2003'an vir ve, bi awayekî profesyonel bi mûzîkê re mijûl dibe. Perwerdekarê defê ye û li Konserwatûara Aram Tigranê perwerdehiya defê dide. Ji kevneşopiya Navenda Çanda Mezopotamya tê û heta çend sal berê jî li Navenda Çand û Hunerê ya Dîcle-Fıratê xebatên mûzîkê dimeşand. Ji 2010'an vir ve jî, li Konserwatûara Aram Tigranê hem bi zarokan re hem bi mezinan re xebatên mûzîkê û bi taybetî jî xebatên rîtmîan dimeşîne. Dersên stranbêjiyê û alfabeya mûzîkê dide zarokan û her wiha perwerdekarê rîtm û defê ye. Ji sala 2006'an vir ve li ser perwerdehiya mûzîkê ya zarokan dixebite.

## Hesen Şerif:

# Hunera me ji reseniya me tê




Zerya Nergis

Hunermendekî ku jiyana xwe bi êş û azar û sirgûnan derbas kirî ye û niha bi hunera xwe çar perçeyên Kurdistanê hembêz dike û di nav wan de dibe pireyek. Hunermend Hesen Şerîf xwe û hunera xwe wiha vedibêje ji me re û dom dike; "Divê hemû hunermendên kurd rola xwe bileyzin da ku pêwîstî bi pireyan nemîne"

### Di nav azarên dijwar de afirîneriya mûzîkê

Hunermendê mûzîkê Hesen Şerîf ku ji zaroktiya xwe ve bi mûzîkê re eleqedar e yek ji hunermendên kurd ên ku karê mûzîkê û şoreşgeriyê bi hev re dimeşîne. Ji ber ku di heman demê de şoreşger e, di hunera xwe de her dem kul û kederên gelê kurd haniye ziman. Hesen Şerîf ê ku ji ber zordestiya li ser gelê kurd wî bixwe jî gellek azaran kêşaye, di sala 1985'an de, di qonaxa ku hewl dide dest bi mûzîkê bike, ji bêçarî ji warê xwe koç dike û bi salan di kampên penaberiyê de dimîne. Ji ber ku di nav malxalanên wî de kevneşopiya dengbêjiyê heye û di bin bandora wan de dimîne, dibe bengîdarê şêweya mûzîka kurdî ya resen, ango dengbêjiyê. Li Duhokê, di 85'an de bi awayekî amator, bi komên piçûk ên herêmî re dest bi pêkanîna muzîkê dike. Bi çûna şevên şahî û cejnan de ezmûneke baş derbas dike, lê belê êş û azar her di rêça wî de ne û dest jê bernadin. Hesen Şerîf dema qala wan rojên dijwar ên penaberiyê dike hêstir li çavên wî bar dibin û wiha dibêje: "Îro jî gelê kurd, dîsa di heman rewşê de ye. Gelê me di salên 85 û 86'an de di rewşeke xeternak de bû. Zordariyeke mezin li ser gelê me yê Başurê Kurdistanê hebû. Di wan rojên dijwar de hesta min a neteweyî zêde xurttir bû. Ji ber vê yekê min dest bi strandina ramyarîyên şoreşgeriyê û yên siyasî kir. Min dixwest ez hunera xwe ji bo xurtkirina tekoşeriya gelê xwe bikar bînim. Bi dilgermî û şiyarkirina gel me dest bi qonaxeke nû ya mûzîkê kir"

### Mûzîkjenekî şoreşger

Hunermend Hesen Şerîf di dema komkujiya Helepçe û enfalê de Peşmerge ye û wê demê hem hunera xwe pêk tîne hem jî ji bo parastina gelê xwe Pêşmergyiyê dike. Şerîf, çêroka jiyana xwe wiha vedibêje: "Jiyana min qonax bi qonax guherî. Ez dikarim bêjim sê qonaxên grîng ên jiyana min hene. Qonaxa yekem; di kêliya şoreşê de destpêkirina hunerê ye. Wê demê em di bin nîrê rejima baasê de bûn. Piştre ji ber stranên ramyari û şoreşgerî em neçarbûn ku em ji bajêr derkevin. Di sala 87'an de em vekişiyan çiyayan. Wê demê nêzîkî sal û 6 mehan min Pêşmergetî kir û li dij baasê şer kir. Piştî ku komkujiya Helebce û enfalê rû da. Ji ber van rûdanên kambax koçberîyeke mezin destpê kir û gelê kurd warê xwe terikand. Di wê kêliyê de em derbasê Bakurê Kurdistanê bûn û hatin bajarê Amedê. Li Bakurê Kurdistanê sê kampên me hebûn û ez li kampa Amedê bi cih bûm. Ew êş û azad nayêne ziman, lewre ziman têra wê nake. Ji bilî 182 hezar kurdên ku hatin qetilkirin koça giran bû sedemê trajediyên pir mezin. Gelek mirovan di rêyan de jiyana xwe ji dest dan"

### 'Armanca min parastina ziman û şiyarkirina gel bû'

Hesen Şerîf piştî ku tê Amedê, dev ji xebatên xwe yên mûzîkê bernade û di demeke kurt de di nav gelê Amedê de pir tê hezkirin. Nêzikê du sal û nîv li kampa penaberên Başûrî ya Amedê dimîne û paşê dîsa vedigere Başurê Kurdistanê. Şerîf rewşa dema enfalê dişibîne rewşa niha ya Rojavayê Kurdistanê û dibêje: "Dema ez li rewşa Rojavayê Kurdistanê dinihêrim, rojên enfalê têne bîra min. Mixabin em kurd her li ser axa xwe penaber in" Şerîf, stranên xwe bi deng û reng, jiyan, bawerî, çand û hûnera kurd dixemilîne û hemu azarên kurdan tîne ziman. Şerîf diyar dike ku bandora zordariya ku ji zarokiya xwe ve jiya ye hê jî li ser hunera wî heye û wiha dom dike: "Bi rastî ku em li dîrokê binêrin, em ne tenê wek fizîkî an jî cografî hatine perçekirin; her wiha zimanê me jî hatiye perçekirin. Hemû tiştên me perçe kirine, dualîti xistine nav me. Ji ber vê yekê bi taybetî ez dixwazim xizmetê li zimanê kurdî bikim. Ez dixwazim di nav kurdan de zimanekî standard pêk bê. Wek hunermendekî kurd, ez dixwazim hemû kurd ji stranên ku ez distirêm têbigihîjin. Armanca hunera min ya sereke ee e. Her wiha armanca min a din jî parastina stranên gelerî ne. Lê belê teqez ez dixwazim ku hemû kurdên perçeyên din ên Kurdistanê ji stranên min têbigihîjin"

### 'Klasîkên kurd rehên jiyana me ne'

Hunermend Hesen Şerîf di berdewamiya axaftina xwe de pêwîstî bi wê yekê tîne ku hemû hunermendên kurd grîngiya berhemên klasîk zanibin û li gor vê yekê tevbigerin. Şerîf wiha dom dike: "Klasîkên me pir grîng in. Divê em Melayê Cizîrê, Feqiyê Teyran û hemû nirxparêzên pend û çanda xwe baş binasin û felsefeya wan bidin nasîn. Ew feylesofê me, bingeha bîrdoziya me ne. Yek ji arman hunera min a sereke jî ev e. Divê em arşîvan berhev bikin, pirtûkan binivîsin û wan di akademiyan de biparêzin û bigeşînin. Ku zarokên me Kawis Axa, Şakiro, Mihemed Arifê Cizrewî nasbikin wê gavê ew ê reseniya xwe jî nas bikin û ew ê bizanibin ji ku derê hatine û wê biçine ku derê"

### 'Strana 'Laleş'ê ji bo gelê ezdî diyariyek bû'

Hesen Şerîf, di derbarê strana xwe ya 'Laleş'ê de jî dide zanîn ku wî xwestiye vê stranê ji ezdiyan re diyarî bike, ji ber vê yekê ew bi salan li ser vê stranê xebitiye da ku bibe berhemeke baş û dom dike: "Ezdîtiyê bi hezar salan ziman û çanda me parastiye. Bi vê mebestê, wek hûnermendekî kurd, min xwest ez ji wan re bi vê strana xwe spasiya xwe pêşkêşî wan bikim. Zimanê me bû ku zincîra navbera kurdên ezdî, misliman û yên din neşikand. Ev stran deng û rengê me bû. Ji ber vê taybetiya xwe, vê stranê bandorekî pir mezin li ser gelê me kir. Ez dikarim bêjim heya kurdên çar perçeyên Kurdistanê û heta yên Ermenistanê pir jê hezkirin û mohra xwe lê dan. Armanca me tiştên pak in û em xebateke dîrokî dikin"

### 'Hunera me ji resentiya me tê'

Hesen Şerîf di dawiya axaftina xwe de balê dikêşîne ser rola huner û hunermendên kurd û pêwîstî pê tîne ku hunermendên kurd ziman, reng û dengê kurdan ku hatine perçekirin ji nû ve vejînin û yekîtiya gelê kurd ava bikin. Bandora hunera tirk û ereban li ser kurdan heye. Lê ger ku bê parastin û geşkirin çand û hunera me têra me dike û dikare hemû kurdan têr bike. Hunera me ne ji esaleta me lê ji resenetiya me pêk hatiye. Lê mixabin dezgehên berpirsiya, li ser televizyonan kontroleke baş pêk nayînin. Ji ber vê yekê teqlidên tirk ereb û farsiyan têne kirin. Ez dibêjim perdeya li ser çavên kurdan rabû û her tişt ketiye destê wan û dikarin nehêlin ku çanda kurd xerab bibe. Şêwazên hûnerê hene. Bi taybet li Başurê Kurdistanê ger ku berhemeke, klasîk an modern çêbikî; divê hunermend di berhemê de ji kurdî hez bike. Lê ger ku kar bi teqlida ereban an jî ya tirkan bibe, ev kêmasiyeke pir mezin e. Êdî wek berê nîne. Derfet hene, azadî heye û mirov dikare berhemên baş û resen biafirîne"

